(KEÇA KURD)

# XANÊ

ROMANA KURDI



BIRÎNDAR

# PÊŞGOTIN

Îro li her welatî evîn,evîndar,evîndarîû dilketin heye.Kîjan welat be bila bibe,kîjan gel be bila bibe û li kîjan kûçê cîhanêbe bila bibe,hebûna evîn û evîndariyê tiştekî bê guman e.

Evîndarî tenê li ser tiştekî nabe,ango -mirov tev nikarin evîndarê tiştekî tenê bibin. Her evîndar li ser rêça dilê xwe dimeşe û li dermanê dilê xwe digere,dilê wî têkeve çi,evîndarê wî tiştî dibe.

Car bi caran qîz û xort dil dikevin hevû bi agirê evînê dişewitin.Gelek caran qîzan xort ji ber ku,ne gihane meqsed û miradêxwe,xwe bi dar ve kirine an jî bi cûreyekîdin xwe goriyê evînê kirine.Ev li her welatîtiştekî ber bi çav e.

Lê carina evîndariyên dilşewatir çê dibin.Nemaze li welatên ku bindest mane,li welatên ku,gelê wî tên perçiqandin û li welatên ku,dewlemendiyên wî yên ser erdîn û bin erdîn tên talan kirin de pir çê dibin.Ev evîn jî evîna welat,evîna serbixwebûna welat û aza diya gel e.

Gelek hozan,gelek dengbêj û gelek hunermend evîndarê welatê xwe bûne,derd û kulên welatê xwe û gelê xwe anîne ziman,gelek jiwan bi evîna welatê xwe şewitîne,dilê wan jibo welatê wan lêxistiye.Gelek ji wan derd û kulên xwe an li ser kaxezan rêz kirine an jî bi deng û tembûrên xwe ve anîne ziman û sedema(ûşt-sebeb)evîndariya xwe bi xelqê dane zanîn û bi wan fêmkirin dane.

Gelê wî welatî,keç û xortên wî welatî ji evîna welat bê par nemane.Wan jî gelek caran axîn û keser ji bo welatê xwe berdane,wan jî gelek caran di dilên xwe de tenê cîh dane evîna welatê xwe.

Em dikarin bêjin ku,yek ji wan welatên kuevîndar ji bo xwe şewitandine welatê me Kurdistan e.Îro di welatê me Kurdistanê de gelek bi evîna welatê xwe şewitîne.Ji xeynî mirovên ku xwe firotine,ji xeynî Axan,Şêxancahş û nokeran,ji xeynî xwe nenasan.

Îro mirov here cem kîjan keç û xort.an - cem zarokekî Kurd,ew dizane ku welatê wî heye û navê wî Kurdistan e,ew dizane bêje ez-Kurd im û lawê Kurda me.Piçûk û mezinên Kurdan mêranî û hebûna xwe,hezkirina welatê-xwe bi sitran û lawikan,bi xweşxwan(marş)û-nivîsaran ve didin diyarî kirin.Ev tev ji - pêşveçûna xebatê û tekoşînê pêk tê.

Lê tiştekî din li welatê me peyda dibe - ku ew jî tiştekî pir ne baş e.Ew jî fam ne - kirina evîna keç û xortan e,ango dîlîtiya(koletiya)jinan e.

Gelek bav û dê,gelek êl û eşîr keçên - xwe an bi zorê didin an jî bi zor keçên xelkê tînin,ango keç û xort bi zewaceke bê dil digihin hev.Çaxa xortê evîndar tengezar be rewşa wî bêtir ne xweş dibe.Bavê qîzan naxwazin keçên xwe bidin kesên bê mal û reben. Qelen dixwazin,qelenekî pir giran.Keçên meweke mal an lawiran tên firotin.Keçên me li ser daxwaza dê û bavê xwe digihên mirovên biyanî û ne nas,bê dil û bê evîndarî dikevin nava zewac û jiyaneke dijwar.

Gelek caran keç û xortên evîndar û dil ketî ji bê çareyî hev direvînin û xwe davêjin bextê mirovên dewlemend an bi rûmet.

Bi vî awayî keç û xort digihin meqsed û-miradê xwe.Lê gelek caran bav û xwediyê keçan bi dû wan dikevin,çaxa wan bibînin an keçkê bi zor ji xort disitînin an jî hev dikujin û dibin dijmin ji hev re.

Lê ev tiştên ne baş tev ne tawana(sûc)me-Kurdan e. Ev tev tawana hebûna nîrên Feodalîzmê û sermayedariyê ye, Hebûna nîrê olperestîû misilmantiya kevin û gemar e.

Di paşmayina gelê Kurd de hebûna Feodalîzmê, tawanbar(yê bi sûc)dijmin e. Dewletên serdest yên ku, welatê me ji xwe re par ve kirine, bi zanatî em di nava şevên tarî de hiştin. Daxwaza wan paşmayîna Kurdan û ne şiyarbûna wan bû.

Bi ser de hebûna olperestî û misilmantîya bê binî em bêtir kirin nav tariya şevê û-ne hişt ku, em ronahiyê bibînin û pê şa bibin. Di derketina ola misilmantîyê de şemaqamezin û giran li jinan ket. Ji ber kû, şerîeta misilmantiyê destûr ne dida ku, jin azad û serbest bin, weke mêran û di nava mercên wekheviyê de bijîn. Tenê şerîetê destûr da ku-jin dîl û kole bimînin, mêr koledar û jin kole bimînin. Li jinan tenê bi çavên mekîna zabûnê tê nerîn, jin bê maf in, ji her mafên xwe hatine bi dûr xistin, weke lawiran(heywan) û weke malekî tên firotin û perçiqandin.

Berî ku Kurd bi zora ço(şûr) bên misilman kirin, di dîrok û civata gelê Kurd de, jin-û mêr ji hev ne dihatin cihê kirin, cîh û rûmeta jinan gelekî bilind bû, jin jî weke mêran xwedî maf bûn. Pir caran mal û malbatên-êl û eşîrekê bi temamî di bin dest û gerandina pîrekekê de bû, wê seroktiya êl û eşîrê dikir û ew ji êrîşên dijmin diparast. Dan û-sitandina di navbêra jin û mêran de, jinanîn û mêrkirin, karê mal û derveyî malê gelekî pêşketî bûn. Azadiyek fireh û bê tixûb di navbêra jin û mêran de hebû.

Lê belê bi wergirtina Ereban re, hemû tişt hatin guhertin. Toreya Kurdan ya kevnare nema.

Di şûna wê de tore û mercên bingehîn yên ola misilmantiyê yên pûç û gemar cihê xwe wergirtin.Qelen,çadira reş,laçik û tiştên din peyda bûn.Pir tiştên toreyên Ereban ketin nav civata gelê Kurd û toreyên gelê Kurd hatin pişavtin.Serbestî û azadiya heyî hêdî hêdî ji nav rabûn,jin ketin bin nîrên zorkerî û zordariyê.

Kurdan rûmeta jinan û qedrê wan di van gotinên jêrîn de dane diyar kirin

"Şêr şêr e çi jin e çi mêr e"
"Jin stûna malê ye"
"Mala bê jin,wek dara bê fêkî ye" û.h.w.d

Lê em nikarin bêjin,ku îro jinên Kurdan xwedî mafê xwe yên bingehîn in.Hebûna nîrên feodalîzmê û pêşveçûna sermayedariyê ya li Kurdistanê yek ji sebebên perçiqandina jinan e.Heta ku civat û risteke feodalîst û serma yedar hebe,perçiqandin û gerdenxwariya jinan misoger e.Êşandin,perçiqandin û zordestiya li ser jinan û gerdenxwariya wan ji ber hebûna risteke feodal,nîv feodal û sermayedar e.Ji ber hebûna refên serdest û jêrdest in. Heta ku di nav civatê de,çi civata gelê Kurd be û çi civatên sermayedar,feodal û nîv feodalên cîhanê bin,refên serdest û jêrdest hebin,jin jî ji serbestî û azadiya xwe bêpar in.Ji lewre,rizgarbûna jinan,serbestî û azadiya wan bi rizgarbûn û serfiraziya refên karker û kedkaran ve girêdayî ne.

Heçî jinên Kurdan in,divê rizgarî û serfiraziya xwe di riya rizgariya gelên Kurdistanê û xebata wan ya ji bo avakirina Kurdistaneke serbixwe,yekbûyî,demoqrat û sosyalîst-de bibînin.Ji ber vê yekê divê jinên Kurdan di gel jinên gelên Kurdistanê milên xwe bidin milên mêrên rizgarîxwaz yên şoreşger û

welatparêz.Wek pêşmergên mêrxas û leheng xwe biavêjin qada şer û doza rizgariya welatê xwe yê bindest û refên kedkar yên jêrdest pêşve bibin.Xwe bigihînin hev,rêxistin û -saziyên xwe çêkin û di xebatê de rola xwe ya mezin bilîzin

Wê çaxê wê keç û xortên Kurdan bêtirs evîndarê hev bibin,wê bêtirs hej hev bikin û dil têkevin hev,wê çaxê wê jin û mêr wek hev bibin û bi dilxweşî û serbilindî di welatê xwe de,di nav gelê xwe de jiyana xwe bidomînin.

\- - - - -

Ev romana jêrîn mêranî û desthilanîna jin û keçên Kurdan dide ber çavan.Weke ku bav û bapîrên me gotine:

"Şêr şêr e çi jin e çi mêr e"

Ji keç û xortên Kurdan re diyarî dikim

B I R Î N D A R
Nexweşxana Elmanya
1982

# X A N Ê

Di gundekî Kurdistanê de mirovek bi navê Ehmed hebû. Ev mirov halê wî ji yê gundiyan xweştir û dewlemendtir bû. Ji ber ku, halê wî ji yê gundiyan xweştir bû, gundiyan jê re- Ehmed axa digotin. Ehmed ji navê axatiyê- aciz bû, lê cardin gundiyan bi navê axatiyê ban wî dikirin.

Ehmed hînî wî navî bû û navê wî ma Ehmed axa. Ehmed axa car bi caran alîkarî bi gundiyan dikir û ew diqedandin. Gundiyê ku bê erd û bê zevî bûn, di erda Ehmed axa de dixebitîn û debara xwe dikirin.

Ehmed axa ji navtêdanê pir hez dikir. Weke her axeyekî wî jî di civata xwe de nav di xwe dida û pesnê bav û bapîrên xwe dida. Ehmed axa wek axayê din ne zalim bû. Zor û- tehdayî ne dida gundiyan. Ji wê yekê gundiyan jî hej wî dikir û êvaran li mezela wî kom dibûn û diketin nava dabaş û bûyerên dem û dewranên berê.

Ehmed axa hertim doşekek hirî li bin û balîfeke nerm jî li ber pala wî bû. Çay û qehwe ji ber kêm ne dibû. Herdû lingên xwe diavêtin ser hev, boqên simbêlê xwe ber bi- jor ve ba didan û fire fir li qehwê dixist.

Êvareke cardin mezela Ehmed axa ji gundiyan hatiye dagirtin, çayê û qehwe li berwan rêz kirine û ketine nava dabaşan (mesele)

Ehmed axa cardin simbêlê xwe ba dide dest bi navtêdana xwe dike û ji gundiyan re qala eşîrên berê dike û dibêje:

-Erê...hûn bi rewşa eşîrên berê nizanin... di dema xwe de eşîr ji eşîra me xurtir tune bûn.

Eşîra me li her cîhî deng da bû...nexasim bavê min,axa weke bavê min bi nav û deng tune bûn..ne hûn nizanin bê ew çi şêrê çiyan bû..ne hûn nizanin bê ew çi fêris û egîd bû. Rehma xwedê lê be,simbêlin sor û qeytanî li ser bûn,mirov dima ecêb mayî...bejn û bala wî bilind û dagirtî,pişt û sînga wî weke ferşên serê bîran bû...lo bavo ji nîşanê re kes ne digihayê,biavêta derziyê dipekand û winda dikir,hevqasî ku nîşangir bû.

Gundiyekî jê pirsî:
-Ma gelo axayê me çend meriv kuşti bûn ?
-Tew tew tew...ji xwe mêrên ku bavê min kuşti bûn nayên hejmartinê..carina ew bi tenê li hember eşîrekê disekinî û zora wan dibir weh..ma mêr weke bavê min hebûn kuro...!

Gundiyan dizanî bûn ku Ehmed axa hinekî bi ser ve zêde dike.Lê dengê xwe ne dikirin.Ji ber ku Ehmed axa ji bo wan baş bû û ne zordar bû.

Bi vî awayî her şev gundî li mezela Ehmed axa kom dibin,çayê û qehwa xwe vedixwin û ji xwe re diaxivin.Her car Ehmed axa wê simbêlê xwe ba bida,firînî li qehwê xisti biwa,tizbiya xwe şerqe şerq jê baniya û dest bi tiştên ku berê qewimî bûn bikira.

Gelek caran Ehmed axa dor(ger)dida gundiyan jî,wan jî çîrok,dabaş,sitran û lawik digotin û şeva xwe bi kêfxweşî diborandin.

Ehmed axa bi jin bû,du lawên wî hebûn. yê mezin li malê kar dikir û yê piçûk jî diçû dibistanê.Jina Ehmed axa bi hemil bû. Ew li benda kurekî an jî keçekê bûn...

Di ser re çend roj derbas dibin.Êva rekê cardir gundî li mezelê kom bûne û civata xwe danîne.

Ji xwe re weke her êvar çîrok,dabaş,sitran û lawikan dibêjin.

Carekê ji nişkê ve xulameke axê kete hindurê mezelê û got:

-Axa,mizgîniya min li te keçeke te çê bû!

Çaxa Ehmed axa ev gotin bihîst,ji kêfa re xwe winda kir û hema li nava mezelê rabû û dest bi govendê kir.Gundiyekî jî jê re sitira.Piştî qederekê Ehmed axa çû mezela jinaxwe û dît ku,vaye keçeke piçûk li ber sînga wê ye.Ehmed axa rabû çû aniya jina xwe maç kir,paç ji ser keçikê hilanî,nerî ku keçekesipehî ye.

Ehmed axa vegeriya û hat mezelê nav civatê.Xelkê li civatê tevda ew pîroz kirin û çavronî bûn danê,ewjî gelekî kêfxweş bû.

Piştî qederekê xortek ji nava gund hat û ji Gênco re got:

-Gênco,çavên te ronî bin lawekî te çê bû!

Gênco hema ji nava civatê rabû ser xwe û berê xwe da malê.Çû malê ku,çi bibîne,vaye lawikek piçûk û lewend li ber sînga diya xweraza ye.

Gênco aniya pîreka xwe maç kir û got:

-Bijî dayika kurê min,tu çiqasî baş û rind î.

Pîreka wî ji kêfa re hêstir ji çavên wê dihatin xwarê.

Gênco rabû cardin çû nava civatê.Civatê ew pîroz kir.

Ehmed axa got Gênco:

-Çavên te ronî bin Gênco,ma kurê te çeleng e?

-Elhemdulah axa,baş e,xulamê te be..

-De xwedê wî bihêle

-Xwedê ji te razî be

-De gundîno,sibê ez ê heft roj û heft şevan govendê li dar xim,divê hûn xwe tê de bieşînin ha!..

-Ser çavan,ser çavan....

Wê şevê axê qehwe li ser qehwê da çê kirin û li ber gundiyan rêz kir.Hetanî derengî şevê axivîn û bi kêf şeva xwe borandin.

Adinî rojê Ehmed axa çend gewende(daholvan û zirnevan)girtin û dest bi govendê kirin.

Gundiyan li ser daxwaza axê,dev ji karêxwe berdan û ketin govendê.Ji gundên dorhêlê jî xelq dihatin û diketin govendê û kêf dikirin.

Destbirakê Ehmed axa heye,navê wî Emer axa ye.Di wê rojê de lawekî wî jî çê bûye.Wî bihîsti bû,ku keçeke Ehmed axa çê bûye û govendê dikin.Hema bi xar radibe çend xulaman dide dû xwe û tê govendê.



Carekê Ehmed axa dît ku va Emer axa li ber çavên wî ye.Hema herdiwan xwe avêtin hev û hevdû hembêz kirin.
-Tu li ser çavan hatî Emer axa,çi ecêb çêbû ku tu bi vanderan de hatî lo ?
-Wey çavên te ne êşin,wele min got ez ê herim serîkî li destbirakê xwe Ehmed axa ximû wî pîroz bikim.

- Ehlen û sehlen,ser çavan.De kerem bikin em herin mezelê rûnin,aniha hûn bê nan in.

Tev bi hev re çûn mezela Ehmed axa û ketin nav pirsiyara.Piştî qederekê ji wan re xwarin anîn,xwarin goşt û girar bû.Tev de ketin ser xwarinê.

Piştî ku têr nan xwarin,vekişiyan û pişta xwe dan balîfan(balgehan) û li rehetiya xwe mêze kirin.Piştî xwarinê ji wan re qehwe jî anîn.

-Ê,Emer axa..rewşa te û halê te çawan e ?ma tu zarokên te yên nû çê ne bûn ? an tu nema zarokan dixwazî ?

-Ha ho..ma meriv çawa zarokan naxwaze Ehmed axa..bi xwedê doh lawekî min çê bû,û min navê wî kir"Misto"Min navê bavê xwe lê kir..

-Ha,pir baş e pir baş e,xwedê wî bihêle.Min jî navê keça xwe kiriye"Xanimê" ji ber ku navê diya min jî Xanimê bû.

-Pir baş e pir baş e,navekî pir xweş e.Ev adetek ji yê me Kurdan e,çaxa meriv navê bavê xwe an diya xwe li zarokên xwe bike, meriv wan ji bîr nabe,bi bankirina navê wan re ew tên bîra meriv...erê..rehma xwedê lê be çaxa min navê bavê xwe li kurê xwe kir, bavê min hat ber çavên min..çavên min tijî hêstir bûn...dinya lê ne hêjaye birako...

-Rast e..ma em çawa bikin heyran..qedera xwedê ye..her tişt di destên wî de ye..bila rehma xwedê li miriyên tevan û yên haziran be.

Herdû destebiran ketin nav dabaşên berê qala eşîr û şerên berê dikirin.Bi dîtina hev kêfxweş bû bûn,kul û derdên xwe ji hev re digotin.Geh dikeniyan geh çavên wan tijî hêstir dibûn,carna jî henek dikirin.

Ha ji vir û ha ji wir,Emer axa daxwaza - dilê xwe got:

-Heyran ez bi rastî bêjim,bi xwedê ez hatime keça te ji lawê xwe re xelat bikim.Ma gelo tu çi dibêjî ?

Ehmed axa hinekî fikirî

-Ez nizanim..hê pir zû ye,gelo çaxa ew me zin bibin wê bi hev qayîl bibin ?ji bo vê de- meke dirêj û derbasbûyî divê..divê em li ben- da mezinbûna wan bisekinin.

-De lo..keça te keça axa ye û lawê min jî lawê axa ye,ma çawa bi hev qayîl nabin!tu çiqas qelen bixwazî ez ê bidim,ez li ber te hazir im.

-De heyran tu dizanî,min keça xwe da û çû. tu çiqas qelen didî tu dizanî.

-Haa..ka destê xwe destbirakê delal..îcar pir baş bû.

Piştî van gotinan Ehmed axa û Emer axa derketin nava govendê û Ehmed axa got:

-Gelî guhdaran,ji îro pê ve keça min Xanimê dergistiya lawê Emer axa ye,divê hûn tev zanibin.

Û govendê cardin dest pê kir.Herdû axa jî ketin govendê û xwe hejandin.

Ber êvarî Emer axa destûr ji Ehmed axa xwest û berê xwe da gundê xwe.Wî jî çû heft roj û heft şevan govend ji bo lawê xwe li dar xist.Wî li gund da zanîn ku keça Ehmed axa dergistiya lawê wî Misto ye.

Ev adetek ji yê welatê me ye.Ji piçûka yî de keç û lawan ji hev re xelat dikin û dibin tawanbarê zewaceke bê dil û jiyane ke dijwar.

# GENCO

Gênco gundiyekî belengaz e.Li cem Ehmed axa dixebite.Çend pez û dewarên wî hene.

Bi xwe kurdekî dilpaqij,baş û mêr e.Gênco navê lawê xwe kiriye "Welat". Ev nav di gund de tune bû,gundî li navê Welat ecêb magund dimînin. Tifingeke Gênco heye pir î delal e.Gênco şivantiya Ehmed axa dikir.Ehmed axa jî salê çend sewal didan Gênco.

Gênco êdî difikirî,lawek jê re çê bû bû. Belengaz bû,nikarî bû ew bida xwendin.Ji bêgavî(mecbûrî) diviya bû ew jî bide ser rêça bav û kalan û şivantiyê bike.Ji xey vê tu çare tune bû...



Dem derbas bûn sal derbas bûn,Xanimê û Welat ketin sala nehan û dehan,ango neh deh salî ne.Xanimê di nav hevalên xwe de bi navê"Xanê" tê nas kirin.Hevalên wê jê re Xanê dibêjin.

Welat her roj bi hevalên xwe re diçû ber kar û berxan.Bavê welat Gênco pir dilxweş bû ku.lawê wî mezin bû ye û diçe ber kar û berxan.

Çûna ber kar û berxan ne tenê karê lawan bû.Keçên di çaxa hev de jî bi lawikan re diçûn ber kar û berxan.Wan kar û berxên xwe tevlihev dikirin û bi hev re diçûn ber wan û ew diçêrandin.

Welat lawekî pir lewend û xwîn şîrîn bû.Hevalên wî pir hej wî dikirin,Welat jî hej hevalên xwe dikir.

Keç û xortên piçûk li ber kar û berxan ji xwe re dileyistin.Pirê caran bi çavgir tînkê dileyistin û pir caran jî bi lak û gok dileyistin.Lê ji nava wan keçek kêm bû ew jî keça Ehmed axa Xanê bû...

Xanê li malê pir aciz dibû.Hevalên wê tev diçûn çolê ber kar û berxan û ji xwe re dileyistin,lê ew tenê di qula xanî de dima,çaxa ew aciz dibû,radi bû û dest bi girî dikir û digiriya.

Rojekê cardin Xanê ji acizbûna digi rî.Ehmed axa ban jina xwe dike:

-Keçê ma ew çima digirî lê ?cardin çi hewala wê ye ?
-Ma ez dizanim,ji acizbûna digirî,ileh di bêje ezê bi hevalên xwe re herim ber kar û berxan û li çolê bileyizim.
-Na qîza min na,tu qîza axayî divê tu li mal be û divê tu li ser xwe be.

Xanê dev ji girî bernade
-îhî,îhî..na bi xwedê ez ê herim,ihi ihi,ma ez li malê çi dikim ? ez jî aciz dibim..

-Kuro de destûra wê bide lo..ma wê çi bibe! ew li malê bi tenê aciz dibe,bila keçik ne girî heyran..

Ne rojek ne du roj,Ehmed axa nerî ku weha nabe,destûra keça xwe Xanê da,ku ew jî here ber kar û berxan.

Rojekê cardin zarok tev li hev civiyan kar û berx dan ber xwe û berê xwe bi kêf dan çolê.Zarokan carekê nerîn ku,va keça axê Xanê jî li nav wan e,tev de pir ecêb mayî man.Welat û Xanê di ber hev re dimeşin.Carekê Welat li Xanê dinere û carekê jî Xanê li Welat dinere.

Welat jê re got:

-Ma tu çawa hatî nava me.bavê te dengê xwe ne kir ?
-Ez pir giriyam,ji bo wê destûra hatina min da.Ji ber ku ez bir aciz dibûm.
-Baş e,tu ji îro pê de dibî hevala me,tu soz didî ?
-Belê,ez ji îro pê de hevala we me,em ê tim bi hev re bin.

Welat ji kêfa rabû çû û rûwê Xanê maç kir.Xanê jî Welat maç kir.

Hevalên wan kenîn û gotin:
-Ha ho..kuro Welat keça axê maç kir,ev çi mêrxas e lo..ha ha ha ha ha...
-Ma çi bû ye lo ? em hevalên hev in ma çi qewimî ?
-Rast e,ma çi bû ye?ez ne keça axa maxa me ez ji îro pê de hevala we me.Lê divê hûn ji bavê min re tiştekî nebêjin ha,dûvre hevaltiya me xirab dibe.
-Na na kes nabêje.
-Ji min re nebêjin keça axa,tenê bêjin Xanê.

Welat her çavên wî li Xanê ye.Yê Xanê jî li Welat e.Ew hê deh salî bûn jî lê herdû li ber dilên hev şîrîn bûn.

Hevalên wan zanî bûn ku,herdû hej hev dikin û hertim çavên wan li hev e.Lê kesî dengê xwe ne dikir,ji ber ku wan pir hej hevalê xwe Welat dikirin.

Carina li ber kar û berxan ji xwe re biçavgirtînkê dileyistin.Çaxa dibe çavê Welat Xanê diçe xwe li cîhekî dûr vedişêre,Welat jî lê digere.Çaxa hevdû dibînin li cem hev rûdinin û li hev dinerin.Hevalên wan jî ji dûr ve li wan dinerin û dikenin.

---------- ----------

Bi vî awayî roj derbas dibin,roj bi roj keç û xort bi xweşî û paqijî,bi kêf û evîn mezin dibin,roj bi roj bêtir hej hev dikin û bêtir bi dilekî xurt dil dikevin hev.

Her şev ne Xanê ji xewna Welat û ne Welat ji xewna Xanê derdikeve.Her şev herdû evîn dar dikevin xewnên hev û kêf û henekan bi hev re dikin.

Di ser wan re meh û sal derbas dibin. Xanê û Welat dibin xort û evîna wan xwe bi ser dil û hinavên wan de berdide û wan dişewitîne.Roja ku Xanê û Welat hev nebînin nikarin tiştekî bikin.Ne nan dixwin ne avê vedixwin.Herdû bi hev hatine girêdan û bûne yek can û yek laş.Tenê hevalên wan,keç û xortên gund,bi evîna herdû evîndaran dizanin.

Xanê nizane ku,bavê wê ji piçûkanî de ew daye lawê Emer axa û dergistiya Misto ye

Welat wan çaxa ji xalê xwe hînî tembûrê bû bû.Tembûreke xweş lê dixist û di ber re digot jî.

Rojek ji rojan bavê Xanê Ehmed axa ban qîza xwe dike û jê re dibêje:

-Qîza min,divê ji îro pê de tu neçe çolê

Terqîn bi nava Xanê ket

-Çima bavo ?
-Êdî tu mezin bûyî,tu buyî xort,ji me re şerme.Dikarin hinek têkevin pêşiya te,êdî divê tu neçe.
Xanê serê xwe dixe ber xwe û hêstiran dibarîne.
Bavê Xanê berdewam dike

-Heta niha me ji te re ne gotî bû.Ji piçûka yî ve me te daye lawê Emer axa Misto.Tu niha destgirtiya wî ye,Mistoyê Emer axa...

Bi van gotinan hiş û eqil di serê Xanê de namîne.Hêstir ji çavên wê xalî nabin.

-Divê tu ji malê dernekevî.Dibe ku di wextekî nêzîk de bên te bixwazin û bibin.
Xanê ji qehran re bi hêrz dikeve û dibêje:
-Ez Misto nakim,ez xwe dikujim jî cardin ez nakim,ez nakim,ez nakim.
Ehmed axa şemaqekê li Xanê dixe
-Hişşş..tu çawa van gotinan li pêş min dibêjî !
Diya Xanê dikeve hundir

-Çima tu li Xanê dixî loo ? Xanê xwedî maf e. wê hê Misto ne dîtiye,te ji piçûkayî de ne - heqî li Xanê kiri ye,ma hewara Xanê û Misto-bû...
-Hişşş..hişş...tu ji van karan tiştekî fêm nakî...çû ye û qediya ye...herkes pê dizane ku Xanê destgirtiya Mistoyê Emer axa ye.
-Tu van gotinan bi serê xwe dibêjî,sibê lawête ji dibistanê bê ewê nebêje çi!..gelo ew vî karî dipejirîne ?tu li van nafikirî ?

-Ev karê min e,herin mezela din de zû.....



Rabûn Xanê û diya xwe çûn mezela din.Xanê dabaşa xwe ji diya xwe re got:

-Ez nikarim dayê,ez nikarim,ez nikarim bêyî Welat bijîm.Ez ji wî pê ve tu kesî nakim. Em herdû jî hej hev dikin.Ger ez sax bim ji-Welat re û ger mirî bim ji axê re me.

-Megrî keça min megrî,ez ê di nav we de herim û bêm,tu qet meraqan neke

Diya Xanê pir hej Xanê dike,ew jî heval-bendê wan e.

Xanê nema dikare ji malê derkeve der,bavê wê destûrê nade.

Welat bêyî Xanê wextî dîn bibe,çend roje ku dilgirtiya xwe ne dîtiye.Bi şev û roj axîn û keseran dikşîne,êvaran qet xew nakeve çavên wî.

Dê û bavê Welat jî pir li ber dikevin. Çiqasî li ber digerin jî,dilê wî geş nabe.

Bavê Welat her tiştî dizane

-Lawê min,Xanê keça axa ye.Bavê Xanê keça xwe nade belengazan.Qîz li gund pir in,tu kîjanê bixwazî em dikarin bixwazin,lê keça Ehmed axa tiştekî pir zor e.

-Na bavo,ez tu jinan naxwazim.Ya ez û Xanê digihin hev yan jî keçên din dê û xwehê min in.Çavê min li tu kesî din tune ye.

Welat her roj tembûra xwe bi xwe re dibe ber pez,dinale û evîna xwe tîne ziman

"Xanimê lê Xanimê
Bûka mala bavê min ê
Tu sebra dilê min ê
Her roniya çavê min ê"

Welat li derve li ber pez dinale û Xanê jî di hundir de hêstiran dibarîne û dil bikul e.

Rojekê Xanê ban diya xwe dike

-Dayê,ez heyranê dayê,min ji zûv de Welat ne dîtiye gelo tu çare peyda nabe ku,ez wî bibînim?niha ew jî ji bo min dinale.

-Baş e qîza min,tu xema nexwî ez sibê we tînim cem hev.

Adinî rojê diya Xanê ji Ehmed axa re dibêje:
-Kuro li malê şekir û çayê nema ye,divê tu herî bajêr wan bistînî

-Wê rojê min sitandi bûn ma çi zû nema ?
- Ma em çawa bikin,her şev mêvan tên,gundî tên ji xwe wê biqedin.
-De baş e ji xwe karê min jî li bajêr hebû.

Bi vî awayî Ehmed axa diçe bajêr,Xanê û diya xwe jî bi xar diçin mala Gênco bavê Welat.

Çaxa dikevin hundir dibînin ku Welat serî di ber de û difikire.

Çaxa Welat serê xwe rakir û çav li Xanê kir,rabûn xwe çem kirin hev.Hêstirên wan ji-ber xwe ve dihatin xwarê.Welat û Xanê çûn mezeleke din.Diya Xanê jî ma li cem dê û bavê Welat.

Welat û Xanê li mezelê bi tena serê xwe ne.Hevdû maç dikin û bêhn dikin..

-Sebra dilê min Xanê,delala min,min bihîst ku tiwê herî ji Misto re,ez wê çaxê dimirim. Xana min,ez bêyî te nikarim bijîm,cana min min sûnd xwariye ku,ji te pêve kesî neynim.

-Ma ez,Welatê min,ez jî weke te sûnd xwarî me,ez jî ji te pêve tu kesî nakim,jîna min malê min her tiştê min tuyî Welatê min.

-Baş e cana min,ma em çawa bikin,ev weha nameşe,ev hesret,ev axîn û girî hetanî kengî-wê dom bike ?

-Ez jî nizanim Welatê min,ez bi her tiştî bi te re me,bi revandin,bi kuştin,tu çawa bixwazî ez weke te me.

Xanê û Welat hevdû hembêz kirine û her dilên xwe nerm û rehet dikin.

Diya Xanê jî bi dê û bavê Welat re keti-ye axavtinê:

-Birayê Gênco,bi xwedê hal û dabaş ji vê ye.Xanê û Welat hej hev dikin,Ehmed axa jî wê Xanê bide kurê Emer axa.Îcar berî ku Xa-nê bide kurê Emer axa,divê em çarekê peyda bikin.

-Wele ez nizanim bê em çawa bikin,tu malê me tune ku,em Xanê bixwazin,ez şaş mame.

Hetanî ber êvarî Xanê û Welat ji xwe re kêf û henekan dikin.Piştî dibe êvar Xanê û diya xwe radibin û diçin malê.Ji ber ku dema hatina Ehmed axa ye.

Ber êvarî nerîn va Ehmed axa ji bajêr hat. Çayê û şekir jî bi xwe re anî bû.Ji ber ku westiya bû,xwe li ser doşekê û li nava mezelê dirêj kir û kete xewê.

Welat pir difikire.Lê çareyekê tenê dibîne,ew jî revandin e,tu riyeke din tune bû.

Lê ew difikirî"çaxa Xanê birevîne,wê bi ku de here,wê xwe bavêta bextê kê?wê xwe bisparta kê?

Ev tev di serê Welat de diçûn û dihatin. lê bêgav(mecbûr) bû ku,hezkiriya xwe birevîne,ji ber ku,wê ew bidana Lawê Emer axa.

---------- ----------



Li aliyê din li gundê Emer axa kêf û govend e.Govendeke mezin li dar xistine,Kêfa Mistoyê Emer axa gelekî tê.Piştî heftakê wê Emer axa here Xanê ji lawê xwe re biguhêze.

## H A D Î

Hadî kurê Ehmed axa yê piçûk bû.Hadî dibistana xwe qedandi bû.Rojek ji rojan vegeriya gund nav malbata xwe.Malbata wî bi hatina wî gelekî kêfxweş bûn.Nexasim Ehmed axa pir dilxweş bû.

Hadî xortekî pêşverû bû.Xwendi bû û haya wî ji welatê wî û ji gelê wî hebû.Xortekî Kurd î xwenas bû.Ew li dijî ramanên kevin û li dijî axan û şêxan bû.

Wê şevê gundî tev hati bûn civatê.Gênco û Welat jî hati bûn.Çaxa Xanê dît ku,hezkiriyê wê hatiye civatê,gelekî dilxweş û sermest bû,kulên dilê wê hinekî sivik bû bûn.

Wê şevê Xanê heta derengî şevê çayê û qehwe li ber mêvanan gerand,lê bi piranî ji bo hezkiriyê xwe Welat xew ne dihat çavên wê. Hevalên Welat haya wan jê hebû.

Hadî çaxa çav li Welat kiri bû,hilfa wî çû bû ser û kêfa wî jê re hati bû.Baş bûn û rastbûna Welat di ruwê wî re xuya dikir.

Welat li cem bavê xwe rûnişti bû,her car çavên wî û çavên Hadî diketin hev û carna bi siwikayî dikeniyan.

Civat tev ketibûn nava axavtinê û diaxivîn.

Carekê Welat ji Hadî pirsî:

-Heval,te xwendina xwe qedand,vêca tê çi karî bikî ?

Hadî bi pirsa Welat kêfxweş bû.

-Rast e bira,xwendina min qediya,lê niha dibistan hatine girtin,piştî şeş mehan ez ê mamostetiyê bikim.
-Gelek baş e,ez te pîroz dikim
-Zor spas kekê Welat,ma gelo tu çi karî dikî?

Welat hinekî sekinî û got:

-Ma em gundiyên reben ji şivantî û gavantiyê pêve çi bikin! Em ne wek te lawê axan e,em ne dewlemend in jî,ji vê yekê em nikarin bixwînin.

Bi van gotinan madê Ehmed axa ne xweşbû.Lê dengê xwe nekir.Hadî jî serê xwe xist ber xwe û şerm kir.

Hevalên Welat bi van gotinan dilxweş bûbûn.Gundî tev li hev dinerin û dev bi ken in.

Hadî dûvre bersiva wî da :

-Rast e kekê Welat,tu rast dibêjî.Axa dewlemend in,sawa wan li ser we heye,axa bi dewlemendiya xwe we ji bo xwe dixebitînin.Mal û canê we ji we disitînin û dikin malên xwe. Hûn çi bêjin mafê we heye,ez bi xwe jî li dijî axan,şêxan û bega me,ez hevalê karker û gundiyan,hevalê we me.

Bi van gotinên Hadî gundî dilxweş bûn û ecêb mayî man.Digotin"kurê axa ye û dev diavêje axa!"

Madê Ehmed axa ne xweş dibe û şerm dike. Serê xwe dixe ber xwe.Nikare dengê xwe ji lawê xwe re bike,ji ber ku li ber dilê wî pir şîrîn e.

Welat cardin devê xwe vedike.Xanê li mezela din nema dizane bê ji kêfa re çi bike Dibîne ku hezkiriyê wê û birayê wê bi xweşî diaxivin.Yekcarî kêfxweş dibe.

-De ka kekê Hadî,ji me re li ser welatê me biaxive,kar û kirinên axan û şêxan ji me re bêje!
Bi van pirsên Welat,Hadî pir kêfxweş dibe. ji ber ku hê hişyarî neketi bû nava gundiyan,lê Welat hinek tişt dizanî bûn.

-Rast e,divê berê em xwe û welatê xwe nas bikin.Sedema(ûşt-sebeb)belengaziya xwe bizani bin.

Kurdan,bav û bapîrên me,berî sala I5I4 an gelek dewlet û împaratoriyetên serbixwe ava kiri bun.Ji ber êrîşên împaratoriyetên biyanî,û ji ber eşîrtiya di nava Kurdan de,ev împaratoriyetên Kurdan ketine.Lê cardin cî bi cî Kurdan mîrîtiya xwe domandine û mêraniya xwe bi cîhanê dane diyar kirin.Dema berê geh bi xweşî,geh bi şer,geh bi xwîn rijandin û geh bi serîrakirin,hate heta sala I5I4 an.Lê piştî vê salê dîrokê pişta xwe da Kurdan,çerxa dinê hêdî hêdî ji bo împaratoriyetên biyanî zîvirî.Hêdî hêdî Kurd diketin.Sedema mezin olperestiya misilmantiyê bû.Ji ber ku,Kurd gelek caran bi ola misilmantiyê ji alî împaratoriyetên biyanî ve hatine xapandin û ji bo wan şer kirine.

Bi piranî Kurd ji alî împaratoriyetên Osmanlî û Eceman(îranî) ve hatine xapandin, van herdû împaratoriyetên feodal û mêtingehkar,Kurd xwe bi xwe dane kuştin û serketina şer ji bo wan,ji bo şana wan bû.Bi vî awayî hêdî hêdî dîroka Kurdan ber bi bindestiyê ve dimeşiya.

Di sala I5I4 di navbêra împaratoriyêta Osmanlî û Eceman de şerek binavê"Çaldiran" ê çê bû.Ev şer li ser welatê me çê bû.Bi vî awayî welatê me ji van herdû împaratoriyetên feodal û qolonyalîst re bû hola şer û dijmin li ser welatê me lotik avêtin.

Piştî şer,di sala I639 de lihevhatinek bi navê"Qesrî şîrîn"di navbêna herdû împarato riyetan de çê bû.Li gor vê lihevhatinê Kurdistan dibû du perçe,perçek ji bo Osmanlî û yê din jî ji bo Eceman.Piştî perçe kirina welatê me,van herdû împaratoriyetên feodal û qolonyalîst pir zînat û sîtem li ser gelên me kirin.

Çaxa Hadî van dibêje,gundî pir dilxweş dibin û bi kêf guhdarî dikin.
Hadî berdewam dike.

-Sedemeke mezin ya ku gelê me li paş hiştiye,hebûna ola misilmantiyê ye.
Berî ku em Kurd bi zora ço(şûr) bên misilman kirin,hal û rewşa dîrok û civata me Kurdan gelekî xweş bû.Dijminatî di navbêra me de tune bû.Jin û mêr weke hev bûn,azadiyeke fireh û bê tixûb di nava me Kurdan de hebû.
Lê piştî ku,Mihemedê tacir û dewlemend rabû û ji bo nav û dengê xwe misilmantî belav kir,û gelek milet kir misilman,ew azadiya di nava me Kurdan de rabû û winda bû.Pir toreyên me hatin pişavtin û gelek toreyên Ereban yên genî û pûç ketin nav toreyên me Kurdan.Piştî ku,misilmantî derket,gelek tiştên pîs derketin holê,qelen,çadira reş,laçik,dijminahî û.h.d derketin holê.Ev tev ketin nav toreyên me Kurdan.
Piştî ku,misilmantî derket,gelek dijminahî kete nava Kurdan,bira bi bira dan kuştin. Kurdan ji bo ola(dîn) xwe hevdû kuştin û ji hev re bûn dijmin.Em ji hev perçe kirin hinek ji me kirin misilman,
û em ji hev re kirin dijmin.
Lê bingeha ola Kurdan Zerdûştî ye(êzîdî)
Bi vî awayî ola gemar,em pir li paş hiştin,em kor kirin û nehiştin ku em çavên xwe vekin.

Çaxa Hadî van dibêje,gelek ji gundiyan serê xwe dihejînin û rastiya gotinên Hadî didin xuya kirin.

Hadî berdewam dike:

-Piştî ku welatê me kirin du perçe,hetanî sala I923 jiyana xwe bi qiriktalî domand.Di sedsala-I9-an û-20-de gelek rabûn li dijî dewletên serdest çê bûn.Lê pir heyf e ku,tevde jî hatin vemirandin.weke"Şêx seîd,dêrsîm, axrî û.h.d.li perçê din jî gelek rabûn çê -bûn lê ew jî hatin vemirandin.wek"serîrakirina,Şêx mahmûd berzencî,simko,ava kirina komara Mehabadê,şerê çardeh salî yê Mele Mistefa barzanî û.h.w.d.lê tevde hatin vemirandin û bi sed hezaran Kurdên bê tawan hatin kuştin.

Di sala I923 de dewletên serdest û qolonyalîst li hev kom bûn û ji bo kara xwe welatê me kirin çar perçe.(Tirkî,îran,iraq û sûrî)Van dewletên serdest û şovenîst,bi her awayî êrîş birin ser tevgêra rizgarîxwaziya gelên Kurdistanê û xwîna wan bê şerm û bê fedî vexwarin.Lê li hember van kar û kirinên dijmin,gelê Kurd her serê xwe hildan û tucarî serê xwe ji dijmin re dananîn.Îro hêjî li welatê me,pêşmergeyên leheng ji bo serbixwebûna welatê me û azadiya gelê me xwîna xwe dirijînin.

Di paşdemayîna gelê me û xebata me de rola axan û şêxan jî mezin e.

Axa bi zanatî û çavekiriya xwe ve,malên we ji we disitînin û dikin yê xwe.Ew gelekî kone ne,ew li ser pişta gundiyan dewlemend dibin û dibin xwedî metik û xaltî.

Lê şêx jî,ji axa ne kêmtir in.Şêx jî di bin ala olî de me nezan,kor,bêhiş dihêlin nahêlin em çavên xwe vekin.Nahêlin em pêşiya xwe bibînin.

Nahêlin em zarokên xwe bişînin dibistanan ji bo ku,em zana û xwenda nebin lê her dem şivan û gavan bimînin,hestiyên ber lingên wan bin û birizin û herin.

Edî divê hûn gundî çavên xwe vekin û wan nas bikin,divê hûn nema bi wan bên xapandin.Ji dêvla hûn malê xwe bidin axa û şêxan hûn malê xwe bixwin,bila zarokên we bixwin.

Ma hûn jî ne mirov in ? ma axa û şêx bi çend seriyan e ?divê hûn ji wan netirsin. divê hûn gundî li hember wan bi yek bin,pişta hev bigirin,destên xwe bidin destên hev û maf bixwazin.Ma ta kengî em ê hestiyên ber lingên axa û bega bin ?ma ta kengî em ê kole û xulamê wan bin ?

Bi van gotinan dilê Ehmed axa nerm bû. dilê wî dişewitî,wî jî gotinên lawê xwe rast didît.Wî di nava xwe de digot" ka heta niha min çi fam kir,min bi dewlemendiya xwe çi kar kir? ez tenê bûm dijminê gundiyan.min tu zor li wan ne kiriye jî lê cardin niha kî zane bê çi ji bo min difikirin.Ma çi heqê min li van gundiyan heye ?lê tev tawana gundiyan e,ez ne axa bûm lê ez kirim axa,ez-jî naxwazim bibim axa"

Gundî piştgirtiya Hadî dikirin û digotin "gotinên wî tev rast in"

Lê hişê Welat hem li ser gotinên Hadî ye û hem jî li ser Xanê ye.Xanê ji bîra wî naçe.



Welat pirsek ji Hadî pirsî:

-Baş e,madem tu li dijî axa yî,va bavê te jî dewlemend û axa ye,tu çima li dijî wî nayê ?

-Ez ji bo bavê xwe jî dibêjim,ez li dijî hemû axa û bega me,lê divê hûn gundî ya xwe bikin yek û li doza xwe bipirsin,wê çaxê hûnê mafên xwe bisitînin

Ehmed axa serê xwe rakir û got:

-Heyran,heta niha min tu zînat û zor li we ne kiri ye,lê cardin jî ez maf didim we.Desibê bila her gundiyek here û ji xwe re erdekî ji yên min bigire û li ser kîsî xwe bi kar bîne.Piştî ku kurê min alîkariya we dike û ya rast dibêje,hûn bi qîma xwe ne. hûn çi dikin bikin,ji îro pê da em tev birayên hev in.Ji îro pêda di nava me da axa tune ne,bila kes ji min re nebêje axa.

Gundiyan teva li çepikan xistin
-Bijî kekê Ehmed bijî...

Wê şevê teva bi kêf û xweşî şeva xwe borandin.Gundî tev bi dilekî geş çûn malên xwe.Lê Welat her li hezkiriya xwe Xanê difikirî.Welat kêfa wî ji Hadî re hati bû.Wî digot"a baş ez ê dabaşa xwe ji Hadî re bêjim,dibe ku ew karibe alîkariya me bike!"

Wê şevê Hadî û bavê xwe dûr û dirêj axivîn,belengaziya gundiyan,baş û qenciya wan tev bi bavê xwe dan zanîn.Bavê wî jî gotinên Hadî rast didîtin û digot"baş e!"

Adinî rojê Ehmed erd û zeviyên xwe li gundiyan belav kir û her gundiyek perçek erd û dexil da yê.Gundî tev ji kêfa re wextî bifiriyana,hevqasî ku dilxweş bû bûn û bû bûn xwedî erd û zevî..

Mala Welat jî erd girti bûn,lê Welat her dilxemgîn bû.Hadî di Welat derdixist ku gelşên(problêm) Welat hene û dilê wî şikestiye. Diva bû Hadî wan gelşan bizanibe da ku,karibe alîkariya Welat bike.

Ehmed ji axatî keti bû,navê axatiyê ji gundê wan rabû bû.Gundiyan nema jê re Ehmed-axa digotin,tenê digotin kekê Ehmed,ji ber ku ji wan mezintir bû.Ev bi saya serê Hadî çêbû bû.Ehmed bû bû hevalê gundiyan û yek ji wan.

Ehmed dabaşa Xanê ji Hadî re ne goti bû. ne goti bû ku,min Xanê daye lawê Emer axa.

----------- -----------

Edî nav û dengê wî gundî li hemû cîhan belav bû.Gundên din,gundiyên din,tev diman ecêb mayî.Digotin"çawa Ehmed axa xwe ji axatî histiye û bûye gundî!"

Ji gelek gundan gundiyan malên xwe bar dikirin û dihatin gundê mala Ehmed û ew jî dibûn xwedî erd û zevî.Ehmed li axatiya xwe venegeriya,ne dixwest axatî hebe.Ji ber ku weniha nava wî û gundiyan gelekî xweş bû û weke bira bi hev re bûn.Tev da hej hev dikirin û rûmeta hev digirtin.

Li gelek gundên din jî,dixwestin weke wî gundî axa ji nava xwe bavêjin û bibin xwedî erd.Li hinek gundan ev bi darê zorê azadiya xwe ji axa girtin û berdan axa.Li gunden din jî,axa bêtir bi hêz bû û axatiya xwe ber dewam dikir.

Ev nûçe keti bû guhê Emer axa jî.Tirseke mezin keti bû nava wî.Ew ditirsiya ku,Ehmed keça xwe Xanê nema bide kurê wî.Lê Emer axa digot"bi darê zorê mabe ez ê Xanê bikim bû ka xwe.kes nikare derewan li min bike!"

Şevekê cardin civat li mala Hadî geriya ye.Tev de devbiken û bi kêf in.Kes nema bi navê hev ban hev dike,pê re an"kekê,an bira an jî heval"dibêjin û bi vî awayî rûmet û rêzdariya(qedir) hev digirin û hevdû pîçûk nakin.

Wê şevê Ehmed bavê Xanê rabû ser xwe û got:

-Gelî gundiyan,gelî biran! madem ku di nava me de axatî nema,madem kî em tev birayên hev in,divê çaxa em tiştekî bikin em tev bi hev bişêwirin û ya rastîn bipejirînin.

Hûn tev dizanin ku,berî niha bi çend salan min keça xwe Xanê dabû kurê Emer axa.Lê niha ez nema zanim,gelo em bidin an em nedin ? Ev bêdilî Xanê ye,divê em riyeke bibînin, Emer axa zû bi zû dev ji me bernade.

Hadî gera(dor) axavtinê girt

-Bi ya min be,madem ku tiştekî me bi axan re nemaye,madem ku em li dijî axan e,divê em keçên xwe nedin axa.Va di gund de xort pir in,xweha min kê bixwaze,kê bike,bi kê qayîl bibe bila ji wî re be.

Xanê li pişt derî van gotinan guhdar dike. Baskên wê tunene ku bifire,êdî hêdî hêdî meq seda dilê wê dihate cîh.

Gundiyan teva got:

-Heyran,hema Xanê kîjan xortî biecibîne ew bi qîma xwe ye,kes ji me nikare wê ji evîna dilê wê veqetîne û vegerîne.

Lê gundiyan tevda dizanî bûn ku,Xanê û Welat hej hev dikin û ji hev pêve tu kesî nakin.

Welat li civatê ye,dilê wî pir geş dibe.Kêfa wî pir tê,dilê wî li ser evîna xwe li xwe dixe û kurpekurpa dilê Welat e.

Hadî di Welat derdixe ku,dilxweş bû ye.Ew dixwaze daxwaza dilê Welat bizanibe.

Hadî rabû û çû mezela din ba diya xwe û xweha xwe Xanê.

Hadî ji diya xwe re got:

-Dayê,ev hewaleke Welat heye,derdekî wî heye ez nizanim bê çi ye.Bi rastî pir kêfa min ji Welat re tê,xortekî şîrîn û hêja ye.

Xanê li wir serê xwe dixe ber xwe.Diya wî her tiştî jê re dibêje.Dibêje ku,Xanê û Welat hej hev dikin û hezkiriyên hev in.

Hadî dikene,serê Xanê radikê û jê re dibêje:

-Xema nexwe Xana delal,ez ê we bigihînim hev. di demeke kurt de.

Xanê ruwê birayê xwe maç dike û dibêje:

-Ma ka ew roj heye ?...

Hadî vedigere nava civatê,ew êdî derdê Welat dizane.

Piştî qederekê diaxivin.Hadî gotinê digire û dibêje.

-Gelî heval û gundiyan,di nava me de tiştekî din heye,ku divê em bi cîh bînin.Îro divê em bizanibin.ku mafê her xort û keçê heye ku hevdû biecibînin,dil têkevin hev û evîndarê hev bibin.Divê meriv van evîndaran ji hev bi dûr nexe,heta ji meriv bê meriv wan bigihîne hev.

Îro di gundê me de du evîndar hene ku,li ser hev dişewitîn û bêyî hev nikarin tiştekî bikin.Ew pir hej hev dikin,ji piçûkahî û heta niha hej hev dikin.Îcar divê em wan bigihînin hev û bextewar bikin,ew mafê wanyê mirovatiyê yê bingehîn e.

Bi van gotinên Hadî,Welat serê xwe dixe ber xwe û dizane ew li ser evîna wan dibêje.

Welat gelekî bextewar bû,wî bawer ne dikir ku wê ev rojên xweş bên.

Gundiyan jî fêm kirin ku ji Xanê û Welat pêve di gund de tu evîndar tune ne.

Gundiyekî got:

-Rast e,divê em wan bigihînin hev,divê em dilê wan geş bikin.

Ehmed.bavê Xanê got:

-Baş e,de ka bêjin bê ev evîndar kî ne lo,jibo em wan nas bikin...

Hadî got:

-Heyran,evîndarên me yek jê xweha min Xanê ye û yê din jî birayê me Welat e.Ev herdû hej hev dikin û bêyî hev nikarin bijîn.

Welat serê xwe xist ber xwe

Ehmed rabû û got:

-De baş e heyran,gelî ciwanmêran,hûn tev şahid in,piştî ku Xanê Welat hej hev dikin min jî qîza xwe Xanê da Welat û çû...

Tevda li çepikan xistin.Welat rabû çû destê Ehmed maç kir û hat cihê xwe rûnişt.

Gundiyek rabû çû mala Welat tembûra wî anî civatê.Li ser daxwaza civatê Welat rahişt tembûrê û dest pê kir û qîr kir strana.Gundî tevde rabûn û destên hev girtin û govendek li dar xistin.



Lê haya kesî ji Xanê tune bû ku,ji kêfa re-wextî bifire.Xanê bawer ne dikir ku wê rojek weha bê û ew û hezkiriyê xwe bigihin hev û serî deynin ser balîfekê.

Wê şevê hetanî derengî şevê gundî li ber tembûra evîndar Welat govend girtin û serke-tina wan pîroz kirin.

Wê şevê xew ne ket çavên herdû evîndaran. Xanê ûWelat ji kêf û dilxweşbûna xew ne di-ket bîra wan û di çavên wan de jîyaneke dûr û bextewar xuya dikir.Hetanî sibê herdû dil-ketî di ber çavên hev re diçûn û dihatin.

Adinî rojê Hadî,Welat û Xanê bi hev re çûn bajêr,ji bo ku tevdarika bûk û zavê bi-kin.Hetanî nîvro hersê xortên Kurdan ji bo bûk û zavê tiştên pêwist û hewce standin.Piş-tî ku pêwestiyên(tiştên ku hewce ne) xwe bi-cîh kirin,Hadî.Welat bi gelek hevalên xwe nas kirin da.Gelek hevalên xwe jî bi Welat da nas kirin.Hevalên Hadî yên rizgarîxwaz û şoreşger li bajêr pir bûn.Tevda bi hev re xwendi bûn û ji bo welatê xwe xebat kiri bûn.

Welat û Xanê hetanî ber êvarî li mala he-valekî Hadî man.Li mala hevalê Hadî,Welat hînî gelek tiştan bû.Hevalî Hadî ji Welat re pir axivî bû,jê re qala pêşmergan kiri bû.

Welat êdî dizanî bû bê Pêşmerge çi ne û ji bo çi şer dikin.Wî jî êdî dil dikir ku bibe Pêşmergeyek ji yê çiyayên Kurdistanê.

Di gel evîna Xanê hêdî hêdî evîna Welat jî li serê Welat dixist.Lê Xana çeleng jî ji wan gotinan bêpar ne ma bû.Wê jî di gel hezkiriyê xwe hînî pir gotin û tiştên baş bû bû.

Ber êvarî Hadî,Welat û Xanê xatir ji He-valên xwe xwestin û berê xwe dan gundê xwe. Her tişt standi bûn.Tenê li dar xisitina govenda Welat û Xanê ma bû.

Wê êvarê cardin gundî li mala Hadî kom bûbûn û civata xwe gerandi bûn.Gundî tev diaxivin,ji nişkê ve yekî li derî xist

teq teq teq

-Kerem bikin,fermo

Derî hate vekirin,nerîn ku mêrekî biyanî ye.Hat silav li civatê kir û rûnişt.

-Tu bi xêrê hatî bira
-Xwedê ji we razî be
-Tu li ser çavan hatî,tu çawayî bira!
-Elhemdullah,ez baş im,rehetiya we dixwazim.
-Tu ji ku tê û tê biçî ku bira ? qey xêr e ?
-Elhemdullah xêr e.wele ez ji filan gundî,ji cem Emer axa têm,divê ez hinek gotin ji Ehmed axa re bêjim.

Belengazo çavên xwe li civatê digerîne û ecêb mayî dimîne.Dibîne ku ne weke mezela axan e û tu kes bi şiklê axa di wir de tuneye.Ehmed axa cilên gundiyan li xwe kiriye û li tenişta wî rûniştiye,lê ew wî nas nake.

Yê biyanî dipirse
-Ma ka Ehmed axa ne li vir e ?
Ehmed axayê berê,li tenişta wî dibêje:

-Tu kîjan Ehmed axayî dixwazî heyran? Ehmed axa çû û mir.Îro ji dêvla wî gundî tev bûne axa.Çi derdê te hebe ji civatê re bêje...Di vî gundî de axa maxa ne man e.

Ew şaş dimîne
-Weh...çawa dibe xwedê ji we razî..bi xwedê Ehmed axa hebû lo,xwedê rehmeta xwe lê bike ma çi zû mir,ev çawa dibe ?

tev kenîn
ha,ha,ha,ha
ha,ha,ha,ha
-Heyran Ehmed axa ne miriye,lê ew axatiya berê miriye.

Li vî gundî êdî axatî tuneye,lê wekhevî heye,biratiya gundiyan heye,ma ev li gundê wê heye ?

-Na bi xwedê tiştekî weha li gundê me tuneye. Axayê gundê me Emer axa ye,lê yê we gundî tev bûne xwedî gotin,ev tiştekî pir baş e.

-Haa...te dît,me ev axatî ji nava xwe avêtiye,niha gundî tev bûne xwedî maf,xwedî erd û weke hev in.

Tu wî mirovê tenişta xwe nas dikî ?ew Ehmed axayê berê ye ha.

Wî li tenişta xwe nerî û got:

-Wele we gelekî baş kiriye,ev gundiyên reben we îro tev kirine xwedî maf.Berê tiştekî weha tune bû,lê va ye hin bi hin tiştên nû û baş pêk tên.

Ehmed ji tenişta wî got:

-De ka meqseda dilê xwe bêje,tu ji bo çi hatiye vir,daxwaza Emer axa çi ye ?

-Heyran,Emer axa ez şandim.Ji min re got ku tiwê herî ji Ehmed axa re bibêjî,min qîza wî ji piçûkahî ve ji lawê xwe re xelat kiriye. Îro herdû bûne xort û gihane,bila bûka me hazir bike van rojan em ê bên wê biguhêzin.

Ehmed
-Heyran,tiştek di destên min de ne ma ye.Ew doz ji destên min derketiye û ketiye destên gundiyan.Ez nikarim tiştekî bêjim,gundî çawa bixwazin û çawa bikin hesil ew in.

Berê me neheqiyeke pir mezin kiriye.Meriv nikare ji piçûkahî de zarokan bide hev û bijiyana wan bilîze.Me berê ev kir lê niha ez poşman im, va îro qîza min mezin bû ye û bû ye xort.Ew îro bi dil e û destgirtî ye. Em ê li gor daxwaza qîza xwe bimeşin û wê azad bikin.

Gundî tev bi hev şêwirîn û dawî li ser van gotinan sekinîn:

-Bira,tê herî ji Emer axa re bêjî ku,berî niha bi çend salan şaşî hatiye kirin.Îro qîzame mezin bû ye û lawê Emer axa naxwaze.Me ewdaye yekî din ku,ew jê hez dike.Em êdî tu qîzan nadin axa.Bila ji lawê xwe re qîza axayekî din bixwaze,îro gundiyên me li dijî axa ne.Me qîza xwe daye.

Yê biyanî bi rewşa wan serbilind bû.Wî jî dixwest di gundekî bê axa de bijî.Rabû ji wan re got:
-Baş e,ez dixwazim mala xwe bînim gundê we ma hûnê destûrê bidin ?ez jî dixwazim weke we xwedî maf bim û weke we bim...
-Baş e,tu bi dilê xwe yî,tu kîjan rojê bê cihête li ser çavan e.
-Baş e,bi xwedê ez ê jî bibim hevalê we û di riya we de bimeşim.

Wê şevê heta derengî şevê axivîn.Piştî derengî şevê gundî çûn malên xwe.Wê şevê Simo li cem mala Hadî ma.Serê sibê li hespêxwe siwar bû û berê xwe da gundê Emer axa.

Welat û Xanê li benda roja govendê ne. Ew êdî bi serbestî hevdû dibînin û bê tirs diçin malên hev û tên.Ew tirs û dizîtiya berê çû bû û cihê xwe ji serbestî û bêtirsiyêre berda bû.

Piştî ku,Hadî tê gund.azadiyeke fireh dikeve nava gundiyan.Gundî tev weke bira ne. Bi serê hev sûnd dixwin û bêyî hev tu tiştî nakin.Rûmet û rêzdariya hev digirin,dilê hev nahêlin û bûne yek dest.Weke hêtekî bi bingeh têkûz(saxlem) in û li dijî axatiyê û kedxwariyê ne.

Ji xey Xanê û Welat,xort û keçên gund yên din jî bê tirs hev dibînin,dil dikevin hev û evîndar dibin.Rewş hatiye guherandin.

## EMER AXA

Emer axa û kurê xwe Misto li malê,li benda hatina Simo ne.Ji xwe Misto hedana wî nabe,dibêje kengî ew roj bê ku,ez û Xanê têkevin ber hev.

Roj dibe nîvro,Emer axa ji rojîne dinere ku,waye Simo berê xwe daye qesrê û tê.

Piştî qederekê Simo hat silav li Emer axa kir û rûnişt.

Simo hal û dabaş ji Emer axa re got.Çavên Emer axa û kurê wî Misto weke tasan vedibûn. Emer axa dima ecêb mayî.

-Kuro ev çawa dibe...çawa dibe ku Ehmed axa bibe gundî û têkeve halê gundiyan,ev çi rezîltî ye,ev çawa axayekî tirsonek derket lo.

-Bi xwedê axa,Ehmed axa li tenişta min rûniştî bû,cilên gundiyan lê û ji xwe min ew qet nas ne kir.Ya mezin gundî tev li dijî axa ne. Pir ji axa aciz in.

Misto li nava mezelê diçe û tê,kufekuf lê ketiye:

-wehhh...ev çi ye..çawa dibêjin em qîza xwe nadin axa..ew dergistiya min e,bi zorê mabe jî ez ê Xanê têxim ber sînga xwe.Ma ew min nas na kin,nizanin ku ez kurê Emer axa me ?

Emer axa cixarê li ser cixarê dikşîne

-De baş e,sibê em ê tev herin û li rewşa wan binerin.Bila ez jî bi çavên xwe bibînim,qey ev dinya hatiye guhertin bavo...

Wê rojê madê Emer axa û kurê wî Misto wek jehrê bûn.Lê dilê Misto her yê xirabiyê bû.Wî digot ileh ez ê Xanê bi zorê di ber can û cesedê xwe kim.

Wê şevê ji qehran xew neket çavên wan. Emer axa li axatiya xwe û kurê wî jî li Xanê difikirî.

Adinî rojê Emer axa bi lawê xwe û bi çend xulamên xwe ve dan ser rê û berê xwe dan gundê Ehmed axayê berê ku,destebirakê wî bû.

Emer axa bawer ne dikir ku,Ehmed axa dev ji axatiyê berdaye,aqilê wî ji vî tiştî ne dibirî.

Li gund gundî tev li binya malan kom bûne.Roj xweş e,rojê tîrêjên xwe berdane ser gund.Gundî ji xwe re ketine nav gotinan û li ser her tiştî diaxivin.

Gundiyan di nav xwe de dirav kom kiri bûn da ku,adinî rojê govenda Welat û Xanê li dar xin.Bi wan diravan du zirnevan û daholvan girti bûn.

Her tişt hazir kirine,kêf di ser kêfa Welat û Xanê re tuneye,malê dinê ne dihat ber çavên wan,mirov bi malê dinê tevî jî hevqasî kêfxweş ne dibû.

Hadî ji hevalên xwe yên bajêr re şandibû ku,divê bên govenda xweha wî.Wan jî haziriya xwe dikirin da ku,sibê herin nav gundiyan û hevalên xwe bibînin.Hevalên Xanê dihatin dora wê,haziriya wê dikirin,dilê wê xweştir dikirin û hêvî dikirin da ku,ew jî weke hevala xwe Xanê bi xweşî bigihin hezkiriyên xwe.



Gundiyan li bin tîrêjên rojê de xwe dirêj kirine û diaxivin.Carekê ji dûr ve dîtin ku wa çend mirovên xwedî hesp berê xwe dane gund û tên.Kes ji cihê xwe rane bû û neçû pêşiya wan.Tev li benda hatina wan man.

Piştî qederekê Emer axa,kurê xwe û bi xulamên xwe ve hatin nav koma gundiyan.

-Selamûaleykum
-Aleykumeselam,we rehmetulahî berekatû
-Hûn bi xêrê hatin heyran!
-Xwedê ji we razî be
-Hûn ji ku tên û diçin ku,we xêr e ?

Tevde hatin li nav gundiyan rûniştin.

-Wele em ji gundê xwe tên,me dixwest Ehmed axa bibînin,hinek karê me pê hebû...

Gundî tev kenîn
ha,ha,ha,ha,ha
ha,ha,ha,ha

-hahò haho...Ehmed axayê çi heyran.Ev ne gundê Ehmed axa ye,ev gundê gundiyan e.Tu axa di vî gundî de tune ne.

-De baş e,naxwe kanî Ehmed axayê berê bi kuda çû ? çi bi wî hat ?

Ehmed ji tenişta wî got:

-Va ez li tenişta te me,qey tu min nas nakî Emer axa ?

Emer axa li tenişta xwe nerî ku,birastî Ehmed axa ye.

-Kuro destbirakê Ehmed,ev çi rezîltî ye ?ev çi halê te ye ? ka axatiya te ? te navê axa herimand.Lawê te cahil e,nezan e,tu radibî bi ya lawê xwe dikî û xwe ji axatî dixî.Ev ji bo me axa kêmasiyeke mezin e birakê Ehmed.

Ehmed di ber xwe de kenî û got:
-Ev ji bo me ne rezîltî ye,ev ji bo me serbilindî û bextewarî ye.Heta niha ez axa bûm û rêmin malê belengazan dixwar,dinya bi dor û rêze Emer axa,dinya ji kesî re namîne,malê dinê ji dinê re dimîne.Niha ez û gundî bira ne weke hev û azad in.Ma ji vê tiştek xweştir heye ?

Hadî ji aliyê din got:

-Dem ji dema rojek heye Emer axa.Wê rojek bê wê gundî li ser serê te derbas bin û herin. Ev axatiya rehet ji kesî re namîne.Çaxa gundî bi doza xwe hesiyan û tê gihiştin,wê çaxê hûnê bibînin bê çi tê serê axa û began.

Ma heta kengî ev gundiyên belengaz ji we re dîlîtiyê bikin,ma ta kengî wê bê maf û ji hebûnên xwe bêpar bin ? hûn van gundiyên belengaz ji bo xwe dixebitînin û bi ser de jî tiştekî nadin wan û hebûnên wan ji xwe re dibin.Ma ev xêra xwedê li ku heye Emer axa ?

Emer axa dengê xwe ne dikir.Tirseke mezin keti bû nava wî,wî bawer kiri bû ku,wê rojekê gundî li serê wî jî rabin û fermanê lê bixwînin.

Serê xulamên Emer axa jî tevlihev bû bû. wan gotinên Hadî rast didîtin.Di dilê xwe de digotin"ger em riya xelasiyê bibînin em ê ji gundê Emer axa û ji axatiya wî birevin û bên bibin hevalên van gundiyên xwedî maf!

Misto guh nade gotinên wan.Ew çarçav dibe û çavên xwe li Xanê digerîne.Dixwaze Xanê bibîne û dilê xwe rehet bike.

Emer axa madê xwe ne xweş kir û got:

-Ehmed axa,serê min bi axatiya te an bi gundiyan naêşe,tu çawa dikî tu dizanî.Ev kar û barê te ye.

Lê me sozek daye hev,divê em wê sozê bi cîh bînin.

-Soza çi,soza me berî niha bi hefde heşdeh salâ bû.Wê çaxê me xeletiyek kiri bû,niha keça min mezin bû ye.Wê hê lawê te ne dîtiye û pê qayîl na be.Me ew daye yekî din ku,jê hez dike.Ji lawê te hêjatir û çelengtir e.Êdî bes serê xwe bi keça min biêşîn Emer axa.Tu keçên me tune ne ku,em bidin lawê te.Here keçeke din ji lawê xwe re bixwaze.

Mistoyê Emer axa zora wî diçe û xwe dixe nav gotinê

-Çawa tu nadî loo...ger bi darê zorê mabe ezê dergistiya xwe ji we bistînim..qey we nav û dengê me ne bihîstiye ?yan ji mirina min e û yan jî,ji dergistiya min Xanê ye.....

Di vê navbêrê de Xanê bi hevalên xwe re ji avê tê.
Bavê Xanê ban Xanê dike û dibêje:

-Keça min Xanê!tu çi dibêjî ?va Misto hatiye te bibe ji xwe re ha.!
Xanê cêrê xwe datîne û dibêje:

-Misto lawê kê ye ? ez tu Mistoyan nas nakim.Ew mirov e an lawir e(heywan) ez nizanim. Bila herin keçên axa ji xwe re bînin,em ne axa ne,bila zû ji vir herin berî ku serê wan bê şikandin

Gundî tev kenîn

ha,ha,ha,ha,ha
ha,ha,ha,ha,ha

-Bijî Xana çavbelek bijî,bijî gula mala bijî
-Wele tu keça kurdan e lê,ku keç hemû ne weke te bin ma hêjane çi...
Xanê cêrê xwe hilda ser milên xwe û berê xwe da malê.Welat bi van gotinên Xanê gelekî dilxweş bû.Tev de jî.

Emer axa û kurê xwe ji gotinên Xanê pir şerm dikin û serê xwe dixin ber xwe.Xanê şemaqeke mezin li wan xisti bû.

Misto bi madekî ne xweş got:

-De baş e,vê ji bîr nekin,we şerefa me xiste bin lingan.Ger ez vê ji we re bihêlim,bila navê min ne Mistoyê Emer axa be.

Welat ji aliyê din got:

-Hûn lawê axan tev weha ne,hûn nav di xwe di-din lê dawî çaxa zor li we tê hûn ji pisîkan jî bêziravtir dibin.

ha,ha,ha,ha
ha,ha,ha,ha
-Kuro we belengazê Emer axa rezîl kir lo,de dev ji wan berdin heyran

ha,ha,ha,ha,ha
ha,ha,ha,ha,ha

Emer axa dibêje:

-De baş e,xwedê ji min û we re mezin e,em ê cardin hev bibînin.

Emer axa,lawê xwe û xulamên xwe rabûn li hespên xwe siwar bûn,bê xatir xwestin,berê xwe dan gundê xwe.Madê Emer axa û Misto weke jehrê bû.Lê xulamên wan di dilê xwe de bi wan dikeniyan û digotin"qenc bi we hat!! Heta ku,gihan gund,kes bi kesî re ne axivî.Dilşikestî û madê wan tirs çûn malê.

Lê Misto dilê wî her li ser xirabiyê bû. Wî dixwest Xanê ji xwe re birevîne û têxe ber can û cesedê xwe.Misto çaxa çav li Xanê kiri bû,hiş û eqil di serî de nema bû.Misto digot"ji xeynî Xanê jin li min heram in!!

Çaxa Misto di van difikirî,kar û xisar ne dianî ber çavên xwe.Mirina xwe ne dianî ber çavên xwe.Ew tenê li bi destxistina Xanê difikirî.

Şevekê Misto û çend zilamên xwe şêwra xwe datînin.
Şêwra wan ev e
Şevekê divê herin dor gundê mala Xanê,wê yek ji wan here agir berde zadê wan yên li ser bênderan.Bi şewitîna zad wê gundî tev derkevin û wê Xanê li malê bimîne.Wê çaxê wê herin û Xanê birevînin.

-------------- -------------,

Êvar e.Gundî tev li mala Hadî civiyane Adinî rojê wê govenda Welat û Xanê li dar xin. Kêf kêfa wan e.
Xanê li mezela din tevdarika xwarinê dike,kêf di ser kêfa Xanê re tuneye.
Wê şevê xew ne ket çavên herdû evîndaran. Ma xew dikeve çavên kê,dilê wan çargopal lêdixe.Roja wan hati bû,roja ku heşdeh salan li benda bûn hati bû,êdî wê bi dilekî xweşû geş bigihana hev û di jiyanê de bextewar biwa na.
Gundiyan di nava xwe de xaniyek ji Welat û Xanê re ava kiri bûn.Xanî bi her tiştên hewcedarî yê xemilandi bûn

Adinî rojê dengê zirne û daholan kete nava hewa û deng dan û govenda herdû evîndaran dan diyar kirin.Kes neçû kar û barê xwe keç û xort,pîr û kal,mêr û jin û heta bi zarokan destên hev girtin û govend dirêj û-geş kirin.
Welat û Xanê cilên wan yên bûk û zavatiyê li wan û li tenişta hev rûnişti bûn.Cilên Welat şal û şapik û yên Xanê jî kiras û xeftan bûn.Herdû evîndar hevqasî li hev dihatin ku.meriv digot qey li cîhanê kesî weha lihevhatî peyda nabin.
Bûk û zava bi cilên xwe yên gelêrî,bêtir sipehî û lihevhatî bûn.Nexasim Xana çavbelek,weke stêrkekê di nava kiras û xeftanan de dibiriqand û çirûsk didan.

Govenda Welat û Xanê tam heft roj û heft şevan domand, ji her gundî, ji her cihî xelq hati bûn govenda wan. Yên ku çav li wan diket li hember çeleng bûn û şîrîn bûna wan, şaş diman û ecêb mayî diman. Digotin "bila kes evîndarê hev nebin ji xey van herdû çelengan!" Hevqasî ku, herdû li gora hev û lihevhatî bûn.

Govenda wan bi xweşî û geşî derbas bû. Keç û xortên gund yên dilketî û evîndar, hêvî dikirin ku, rojek bê ew jî weke Welat û Xanê bi xweşî bigihin hev û govenda xwe li dar xin û serê xwe deynin ser balîfekê.

Welat û Xanê bi dilekî xweş gihan miradê xwe û herdû bûn hevalên hev hevalên jînê ku, tucarî devjihev bernedin.

Li gund maleke din zêde bû bû. Mala Welat û Xanê.

Adinî rojê gundiyan teva çûn ew pîroz kirin, serketin ji bo wan xwestin û cardin çûn kar û barên xwe.

Welat jî weke hemû gundiyan bû bû xwedî erd û sewal, êdî wê ew û Xana xwe di erd û dexla xwe de bixebitiyana û jiyana xwe bidomandana.

Heta vir bi xweşî derbas bû bû. Lê derd û kul hê hebûn. Belayeke mezin li pêşiya wan bû. Ew jî lawê Emer axa Mistoyê dilxirab bû. Misto her sûnd xwari bû ku, Xanê birevîne û têxe ber canê xwe yê tijî kîn.



Welat û Xanê êdî bê xem bûn.Welat her roj diçe karê xwe û Xanê jî karê malê dike.Car bi caran Xanê û Welat bi hevre diçin û bi hevre tên malê.Êvaran bi dilekî xweş diketin hembêza hev û ji xwe re kêf û henekên xwe dikirin.

Welat dil bi tirs bû.Tirsa wî ev bû ku, Mistoyê Emer axa tiştekî bîne serê Xanê.Ji bo vê^yekê Welat rojekê çû bajêr cem hevalên xwe.Ji xwe re bi çend qirûşan demançek stand. Welat demançe anî malê û hînî Xanê kir.Her tiştên demançê şanî Xanê dan,ji bo ku di rojên teng de bi kêrî wan bê,û ji bo wan amade be.Welat hingî hej Xanê dike,bi tirs diçe ser kar û bi tirs tê.Ew ditirse ku,tiştek bê serê arama wî.(sebra wî).Lê Xanê ne ji wan jinên tirsonek e.Ew qet natirse,ji ber ku ew di navbêra jinan û mêran de tu ferqiyê nabîne. Ew dibêje"şêr şêr e çi jin e çi mêr e!"Ev gotin ji hevalên bajêr hîn bû bû.

--- --- ---

Mistoyê Emer axa û çend zilamên xwe biryar dane,xwe girêdane,wê şevê wê herin û Xanê birevînin.

Misto û zilamên xwe çekên xwe avêtin milên xwe,li hespên xwe siwar bûn û berê xwe dan gundê mala Xanê.

Êvar e,weke her car gundî tev li mala Hadî civiyane û kêfa xwe dikin.Haya kesî ji tu tiştî tuneye.

Misto û zilamên xwe hatine dorhêla gund. Diviya bû şêwra ku danî bûn pêk bînin.Zilamên Misto yên gundî bêdilî wan bû,ev tişt baş ne didîtin.Xanê dabûn mêr û zewicî bû.Piştî vê,revandina Xanê tiştekî bênamûsî bû.

Misto rabû zilamek ji yên xwe şand ku agir bi zadên gundiyan yên li ser bênderan xe.Zilamê gundî bêdilî çû.Şev tarî ye.Yê gundî çû û li cem koma zad rûnişt û ji xwe re fikirî û got"ma çi xezeba xwedê li min bû ye,ev zadê gundiyan ê salekê ye,ma çi heqê min li wan heye ku,ez bê sedem(sebeb) rabim û bişewitînim û wan birçî bihêlim ? Keça xelkê gihaye hezkiriyê xwe û çû ye,îcar ev çi zor e, ev çi bênamûsî ye ? de bi xwedê ez destê xwe nadim tu tiştî.Ya baş ez ê herim gundiyan agehdar bikim,ez bênamûsiyê nakim,ez ne xiniz im ku xiniziyê li birayên xwe yên gundî û Kurd bikim!"

Misto û zilamên xwe yên din li benda hatina hevalê xwe ne.

Zilamê Misto"Hecî",gundiyekî Kurd î dilpaqij e,ew jî radibe diçe gund û diçe mala Hadî.

Hecî dikeve hundir

-Selamûaleykum ya civatê

Gundiyan nerîn ku yekî biyanî ye

-Aleykumeselam û rehmetulah...kerem bike birayê ezîz.

Hecî hat li ser doşekekê rûnişt

-Tu bi xêrê hatî bira,xêr e derdê xwe bêje.

-Heyran derdê min ev e.Hal û dabaş ev e.Bi xwedê Mistoyê Emer axa û em çend gundî hatin dora gund,ew niha li benda min in.Ji min re gotin ku,here agir bi zadê wan xe ez jî hatim.Lê heyran tu heqê min li we tuneye,ev tiştekî bênamûsî bû.Ûjdanê min nepejirand.Bi xwedê niha Misto dixwaze Xanê birevîne,ew niha li dora gund û li ber filan latê ne.

-Haa...mala te sed carî ava be birayê hêja. Bi rastî te baş kiriye.Te qencî û başbûna xwe li vir da diyar kirin,em spasdar in.

Ew ji xwe re diaxivin,lê Xanê li aliyê din her tiştî guhdar dike û dibihîze.Xanê radibe bêyî wan diçe malê,demançê dixe ber xwe û berê xwe dide cihê Misto.Şev tarî ye lê Xanê tu xeman naxwe û natirse.

Gundî radibin xwe kar dikin,rext û tifingên xwe diavêjin stuyê xwe û dikin herin ser Mistoyê dilxirab.Di wê navbêrê de Welat dibêje:

-Kuro kanî Xanê li ku ye ? bila ew li mal be ha!

-Xanê..Xanê..ka tu li kuyî ?

-Kuro niha derkete der.Ez nizanim bê bi ku de çû.

Welat diçe li malê dinere lê ne li mal e jî.Tirseke mezin dikeve dilê Welat.Cardin vedigere nav gundiyan.

Hê gundî di nava wan fikir û gomanan de, ji nişkê ve li pişta gund dengê teqîna demançan hat

Teq teq teq
Teq teq teq

Gundiyan dan lezê

-Kuro zû bibezin,bi xwedê ev tiştek qewimî
-Zû divê em wana bigirin
-Kuro Misto sax nehêlin lê destên xwe nedin gundiyên din ha..
-Kuro ev axa bûn bela li serê me,em herin ku ji me re dibin asteng,em ê niha şanî wan bidin bê em Kurd çi tînin serê wan.

Xort û mêrên gund rahiştin tifingên xwe û berê xwe dan cihê ku,dengê demançê jê hat.

Jin,keç û zarokan jî her yekî rahişt darekî û fanosan û wan jî dan dû mêran û beziyan.

Haya kesî ji Xanê tune ye.Nizanin ku xwediyê demançê Xana leheng e,nizanin ku demançe bi tiliyên Xanê hatiye texandin.

Gundî ha li vir,ha li wir,dawî xwe gihandin xwediyê demançê.Çaxa gihan wir dîtin ku çi bibînin.

Va Misto li erdê vezilandiye û di nava xwînê de ye.Xanê jî demençe di destan de û li ser serê Misto sekinî ye.Zilamên Misto jî çekên xwe danîne û rûniştine.

Welat bi xar çû Xana xwe maç kir û got:

-Bijî delala min,ez dizanim di cîhanê de tu tenê sebra dilê min î.

Xanê:

-Xema nexwe Welatê min,tu kes nikare destê xwe bavêje namûsa me,êdî bila dilê te rehet be.

Gundî tev li Xanê man ecêb mayî.

-Bijî Xana hêja bijî.Bi xwedê tu lehenga Kurdan î .

Xanê:

-De bila Misto bixwe êdî,qey namûsa me jê re berdayî bû ? ev axa namûsa hemû kesî ji xwe re berdayî dihesibînin.Çavên xwe berdidin namûsa hemû kesî.De îcar bila bizanibin ku em weke wan ne bênamûs û bêşeref in.

-Keçê bi xwedê Xanê gula mala ye.Hema tu herdû çavên min bî lê,wele te qenc û rind kir. Qey ava reş bi çavên wan de hati bû ? Qey namûsa me ji xwe re li ser sergoyan dîti bû.? Ev çi bêxîret û bênamûs in.Heqê van mirovên bênamûs e ku,meriv yekî ji wan sax nehêle.

Keç û jin jî ecêb mayî ma bûn

-Keçê Xanê çawa ew kuşt ? bê Xanê ,çiqasî bi ceger e qirikê...

-Qenc û baş kir,bi xwedê ew ji me teva mêrtir û bi cegertir e.

-Rebenê,divê jinên Kurdan hemû weke Xanê bin Ev mêrên bênamûs divên bi destên jinan bên kuştin.

Wê şevê gundî cardin çûn mala Hadî.Gundiyên Misto jî bi wan re çûn mala Hadî.Tu tişt bi wan ne hati bû kirin.

-Heyran bi xwedê qenc û baş kir,qenc û baş bi wî hat.Misto pir bênamûs bû,em bi xwe jî bi zorê bi xwe re anîn.Bi saya serê Xanê em jî jê xelas bûn.

-Heyran bi sûnda mezin,heqê van axan e ku,meriv pêl serê tevan ke.Hingî dewlemend in,çavsor dibin û çavên xwe berdidin namûsa me kuro,ev çi bê xîret û şeref in lo...

Gundiyên Emer axa dilê xwe nerm kirin

-Kuro bi tirba bavê min,ez nema serê xwe ji Emer axa re ditewînim.Ma xune heta kengî em ê dîlîtiya wî bikin ? Bi sûnda mezin ji nûvre ew bêje yek ez ê bêjim deh.Ma xune xwelî bi serê me de rijiya ye ? qey em ne mêr in, qey em ne Kurd in kuro ?

Hadî:

-Heval,divê hûn ji Emer axa netirsin.Divê hûn roj berî rojê jê xelas bibin û ji nava xwe rakin.Divê keda destên xwe hûn bixwin,ne axa û beg.Divê hûn jî weke me bibin xwedî maf. Ger hûn serê xwe ranekin,hûn ê tim di vî halî de bin û belengaz bin.

-Na bi xwedê tu çara me nema.Sibe dusibe wê dest bavêjin namûsa me jî,divê zû bi zû em Emer axa ji nav xwe biqewirînin.Ev rewş weha nameşe heyran..ma xune bi derewan e..ev li ber çavan e...

Wê şevê gundî tev li ser namûs û bê namûsiyê axivîn.

Lê Xanê êdî keti bû devê her kesî.Her kes li Xana leheng ma bûn ecêb mayî.Rûmet û rêzdariya Xanê roj bi roj di nava gundiyan de zêdetir û pirtir di bû.

Di gund de heta niha ne hati bû bihîstin ku,jinekê mêrek kuştiye.Lê Xanê ev mêranî kiri bû û rê şanî jinan da bû.Jinên gund êdî weke berê ji mêran ne ditirsiyan.
Welat êdî bê tirs bû.Tirsa wî ya mezin Misto bû,lê Misto jî bi destên Xana wî hate kuştin.Êdî di riya Xanê de tu kes ne ma bû.
Dilê herdû Kurdan rehet û geş bûn.

Kuştina Misto ya bi destên Xanê,ji bo pêşdeçûna jinan di gund de bû pêngaveke mezin Piştî ku,ev bûyêr belav bû û hat bihîstin,êdî mirovên bê namûs û tolaz ne diwêrî bûn weke berê çavên xwe berdin jinên xelkê û xwe ji wan bi dûr dixistin.Jinan jî êdî Xanê ji xwe re kiri bûn rêber û di riya wê de dimeşiyan.
Ev pêşveçûneke pir mezin bû.Vê bûyerê da diyar kirin ku,jin jî weke mêran mêr in û karin her tiştî bikin û bi cîh bînin.



Adinî rojê laşê Misto li ser hespê kirin û bi gundiyên wî re şandin bi ser bavê wî Emer axa de.

Emer axa çaxa çav li laşê lawê xwe kir,bi hêrz ket.Laşê Misto di nava xwînê de bû.Gundî dilxweş bûn,ji ber ku,Misto ji bo bê namûsiyê çû bû,û heqê xwe standi bû.

Emer axa çav bi hêstir û got:

-Kê lawê min kuşt ? we çima hişt ku ew bê kuştin ?

-Lawê te Xanê kuşt.Lawê te ji bo namûsa xelkê çû bû.Va wî jî derba xwe dît.Ma qey namûsa xelkê li ber we berdayî ye ?ev çi bênamûsî ye ?ev çi pîsîtî ye ? qenc û xweş bi lawê te hat,ma heta kengî wê li dor jinên xelkê bigeriya ?

-De baş e lawo,hûn jî îro li serê min radibin. lawê min bi we re bû,we ji qazî ve kuştiye.

-Em ne bênamûs in Emer axa.Çavê me di namûsa xelkê de tune ye.Mirovên bênamûs em serê xwe pê naêşînin.Ji îro pê de em nema te nas dikin,em êdî axatiya bi bênamûsî na pejirînin. Em êdî axa maxa naxwazin.

-Rast e,divê di hundirê heftakê de tu gundê me terk bikî,an em te sax nahêlin.

-Heta niha me koletiya te kir,êdî bes e.Dinya bi dor û rêz e.Ji îro pê de evqase erd zevî,çiya û gund tev yên me ne,yên gundiyan e.Tu tiştekî te tê de tune ye,divê tu gavên xwe li gorî xwe biavêjî.

Emer axa hêstirên wî dihatin xwarê.Tirsa wî hati bû serê wî.Edî wî nema dikarî bû axatiyê bike.Her tişt ji destên wî derketibûn.Kes li pişta wî ne ma bû.Diviya bû gund terk bike û terk û dinya bibe.

Weke hemû axan,dawiya wî jî hati bû.êdî ew dem û dewranên berê yên axatiyê û xweş wê tenê di xewnên xwe de bidîta.

Adinî rojê Emer axa gora lawê xwe bi destên xwe kola û ew tê de veşart.Kesî alîkariya wî ne kir.

Emer axa di hundirê heftakê de,rojekê li hespê xwe siwar bû û terk û dinya bû.Ji wê rojê ve tu kesî deng û pêjina wî ne kir.

Gundiyan,erd,dexl,zevî,rez û hebûnên din li hev parvekirin û hebûnên xwe xistin bin ger û destên xwe û ji xwe re bi kar anîn.Wan jî weke gundê din alîkariya hev dikirin û bêyî hev tiştek ne dikirin.

Car bi caran gundî tev,ji gundekî diçûn gundê din û şevbihêrka xwe dikirin.Di nav herdû gundan de girêdanek germ pêk hati bû.

Bi vî awayî nav û dengê Xana leheng belav bû û ji gundekî çû gundê din.Çaxa nav û dengê xanê dihate bihîstin,di nava xelkê de digê bû hesret ku,Xanê bibînin.Çaxa nav û dengê Xanê dihate bihîstin,xelkê dizanî bû ku,ev jin mêr e,bi namûs e û berberî hezar mêrê pîse.Ji xwe keç û jin bêtir hej Xanê dikirin.Ji ber ku Xanê rê ji wan re vekiri bû ku,ew jî bikaribin mirovên pîs,mirovên xiniz û mirovên bênamûs bikujin.

Edî jinan ji Xanê fêre digirtin,wan jî dixwestin weke Xanê mêr bin û leheng bin.Wan digot"divê em rê nedin mirovên xiniz(xayîn) û tolaz.Divê em tucarî bênamûsiyê ne pejirînin û em nekin jî!"

Ji xwe mêran Xanê mêr dipejirandin.Digotin divê jinên gund tev weke Xanê bin û weke mêran bin.Divê jin ji dîlîtiya mêran derkevin û weke toreyên Kurdan yên kevin,azad û serbest bin.

Bi vî awayî hêdî hêdî azadiyeke bê tixûb dikete nava mêr û jinên gund û rêdana(izin) wan ya axavtinê hebû.



ŞÊR ŞÊR E ÇI JIN E ÇI MÊR E

Di ser wan re demeke dirêj derbas dibe.Rojekê çend hevalên Welat û Hadî yên Pêşmerge têne gund.Ji ber ku,mala Hadî fireh û mezine,tevde diçin mala wan.Tevde bi dîtina hev kêfxweş dibin.

Evarî gundî dibîhîzin ku,mirovin bi navê Pêşmerge hatine gund.Gundî tev berê xwe didin mala Hadî.

Gundî xêrhatinê li wan didin û rûdinin. Gundî pir kêfa wan ji wan re tê,her yekî rextek li pişta wî,demançek di ber wan de û keleşkofek li ber wan e.

Evarî gundî tev tên cem wan û bi dîtina wan kêfxweş dibin.Xanê û jinên din jî li nava mêran rûniştine û weke mêran in.

Gotinek ji vir û yek ji wir,dabaş vedibe.

Hadî ji yekî dipirse:

-ê kekê Şepal!rewşa hevalan çawan e ? hê şerê xwe dikin ?

-Heval tevde baş in,pir silavên wan li we hene.Ew hê şerê xwe yê li hember dijmin berdewam dikin.

-Tu heval ji alî dijmin ve ne hatine kuştin?

-Na,hevalên me ji wî alî ve pir tekoşer û têgihiştî ne.Heta niha me tu heval winda ne kirine.Wê rojê pêşmergeyên me êrîş birin ser dijmin,gelek ji wan bi dojehê(cehnemê) şa kirin,pir ji wan hatin birîndar kirin.Bi serde gelek çek û tifingên nû û rind ketin destên me.

-Gelek baş e,gelek baş e.Rewşa wan ya aborî çawan e ?xwarin û cilên wan hene ?

-Wele heval,niha rewşa wan ya aborî baş e.Mala gundiyên me ava be,ji me re xwarin û tiştên hewceyî tînin.

-Tu dizanî,min pir bêriya hevalan kiriye.Dilê min pir heye ku,ez bêm nav hevalan û çend mehan bimînim.
-Baş e,rewşa we û gundiyan çawan e ?
-Rewşa me pir baş e.Gundiyên me jî bi xwe û bi doza xwe hesiyan e,doza welatê xwe û gelêxwe fêm kirine .Ji wî alî ve gelekî bi pêşve çûne.

-Heyran,hevalno! em ji bo armancekê hatine vir,hûn destûr bidin em ê armanca xwe ji we re bêjin!

-Ser çavan,ser çavan,armanca xwe bibêjin.

Gotinên Pêşmergan gelekî li xweşiya gundiyan dihatin.Gundiyan navê Pêşmergan bihîsti bûn lê ew ne dîti bûn.Lê niha ew hesret jî,ji dilê wan derketi bû.Pêşmerge li ser xwe bûn.Awirên wan ji yên Şêr û Pilingan jî tûjtir û xirabtir bûn.Meriv di wan derdixist ku,ji tu tiştî natirsin û ji tu tiştî xwe nadin paş.
Gundî tev bi wan serbilind bûn.Wan di nava xwe de digotin"ev in parêzgerên welatê me,ev in şêrên çiyayên Kurdistanê,ev in yên ku,dijmin ji tirsan dilerizînin,her bijîn!"

Yekî ji pêşmergan armanca xwe got û destpê kir:

-Gelî bira,weke ku em tev dizanin welatê me Kurdistan îro di bin nîrên qolonyalîzmê de û di bin nîrên feodalîzmê de dinale.Gelê me ji hebûnên xwe û ji mafên mirovatiyê mehrûm û bê par in.Ji alî dijmin bi zanatî nezan û li paş hatine hiştin.Îro li hember dijmin,li hember qirkirinên wan yên ne mirovtî,pêşmergeyên me yên leheng(qehreman) serê xwe li hember dijmin rakirine û ji bo serbixwebûna welatê me tê dikoşin û şer dikin.Ev serxwegirtiya(wezîfe) me Kurdan tevan e ku,li ser rêçeke rast ji bo welatê xwe şer bikin û dijmin ji welatê xwe biqewirînin.

Îro Pêşmergeyên me yên rizgarîxwaz,gelek derbê giran li dijmin dixin û birînên bê derman di laşê dijmin de vedikin.Ji ber ku,pêşmergeyên me yên leheng ev demeke dirêj e ku, şer dikin,pir westiyan e.Divê hinek pêşmergeyên nû têkevin şûna wan hetanî ku,pêşmerge yên westiyayî bêhna xwe berdin û bi ser xwe bên.

Piştî ku,Pêşmergeyên me bi ser xwe bên,îcar yên nû bi qîma xwe ne,ger bixwazin dikarin vegerin malên xwe.Ger bixwazin jî dikarin bi birayên xwe re şerê dijmin bikin.

Daxwaziya me ev e,îcar em nizanin bê hûnê çi bêjin û ramana we çi ye ?

Welat ji aliyê din got:

-Hevalno! ev serxwegirtiya me tevan e.Divê em birayên xwe yên pêşmerge bi tenê nehêlin. Divê li gor hêza xwe em herin û pişta birayên xwe qewîntir bikin.Ew ji bo azadiya me û ji bo rizgariya welatê me şer dikin û xwîna xwe dirijînin.Bê şer û tekoşîn em nagihên armanc û daxwaziya xwe ya bingehîn.Divê bi çiawayî be em alîkariya birayên xwe bikin.

Ez bi xwe amade me.Ez bi we re têm û bila ez di ber welatê xwe de û bi serbilindî gorîbibim.Ma tiştek ji vê xweştir heye ? Îro birayên me şerê gelerî didin,çaxa em li malên xwe rûnin û li wan temaşe bikin,ji me re gelekî şerm e.

Xanê ji nava jinan got:

-Ma destûra jinan heye ku,baxivin ?

-Çawa tuneye xweha min ?destûra jinan jî weke ya mêran heye.Em tu ferqiyê naxin nava jinan û mêran.Azadiya jinan ji bo me û ji bo toreya me gelekî pêwist e.

-Baş e,madem ku,destûr heye ku baxivin û jin û mêr weke hev in,wê çaxê serxwegirtiya mêran serxwegirtiya me jinan e jî.
Divê em jin jî milên xwe bidin milên mêrên rizgarîxwaz,welatparêz û şoreşger.Divê em jî weke pêşmergeyên leheng xwe ji bo serbixwebûna Kurdistanê bavêjin qada şer.
Weke ku,bav û kalên me gotine"Şêr şêr e çi jin e çi mêr e" Divê tu ferqî nekeve navbêra jin û mêran.Ji ber ku,şoreş bê jin nabe.Divê di şoreşê de rûmet û rêzdariya jinan pir be. Rola jinan di pêkhatina şoreşê de gelekî mezin û gelekî jî giring e.
Ez bi xwe di gel hevalê xwe Welat,em ji bo şerê serbixwebûnê amade ne.Em bi can û bi mal bi birayên xwe yên pêşmerge re ne.

Xanê bi van gotinên xwe,dilê tevda geş kir. Gundiyan tevda êdî biryar dan ku,herin û bibin pêşmergeyên çiyayên Kurdistana rengîn.
Çend keçên din jî biryar girtin ku,weke Xanê û bi Xanê re herin alîkariya birayên xwe bikin.Wan jî dixwestin weke xwehên xwe"Leyla Qasim û Şello(Margrêt) û hezarên din ji bo welatê xwe bên gorî kirin û bidin riya wan.

Gundî tev dilxweş bûn.Ji ber ku wê ji bo serbixwebûna welatê xwe û li hember dijmin şer kiribiwa na,ji ber ku,wê alîkariya birayên xwe yên pêşmergê ku,bi salan li serê çiyayên Kurdistana rengîn bi dijmin re şer dikirin,kiribiwa na.

Adinî rojê Hadî,Welat û pêşmerge tev çûn gundê ku berê di destê Emer axa de bû.Gundî bi hatina wan pir dilxweş bû bûn.Dabaşa xwe ji wan re jî gotin û dan zanîn.Xortên gund teva biryar dan ku,ew jî herin alîkariya birayên xwe.

Ji herdû gundan qederê sed xort amade bûn. qederê deh qîzên leheng jî bi wan re bûn.Xanê jî tev li wan e.

Di hundirê heftakê de pêşmergeyên nû xwe kar kirin,cilên xwe li xwe kirin,çek û tifingên xwe avêtin milên xwe,xwarin û tiştên hewcedariyê bi xwe re birin û bi serbilindî berê xwe dan hevalên xwe yên pêşmerge ku,li ser çiyayên Kurdistana rengîn bûn.

Xanê û hevalên xwe yên keç,xwe gelekî baş girêda bûn.Weke hemiyan wan jî destmalên belek belekî li serê xwe pêça bûn,rextên dagirtî li bejina xwe ya zirav şidandi bûn,tifingên xwe danî bûn ser milên xwe û li pêşiya wan dimeşiyan.

Çaxa pêşmergeyan ev keçên Kurdan yên leheng di nava xwe de didîtin,bêtir dilxweş,kêfxweş û serbilind di bûn.Nexasim keça Kurd ya leheng û çeleng Xanê,bêtir dilê hevalên xwe qewîn û bi bawertir dikir.

Lê Welat ji hemiyan bêtir serbilind bû.Ji ber ku,Xana wî ya çavbelek bi wî re bû,êdî çi bibiwa ne xema wî bû.Ji ber ku wê wî û Xana xwe bi hevre şerê dijmin kiribiwa na.Bi kuştin û hiştin wê bi hevre biwa na.

Tev bi çûyina şerê gelêrî yê welatê xwe gelekî serbilind bûn.Pêşmergeyan teva dabûn dû hev û ber bi hevalên xwe yên parêzger û xwînrêj ve dimeşiyan.

Li ser çiyan qederê rojekê meşiyan.Carna digihan çiyana ku,meriv digot qey rê bi wan nakeve.Hevqasî ku,bilind û asê bûn.Lê pêşmergan ev çiya qul bi qul dizanîn.Dizanîn bê riya xelasiyê li ku ye û çawa ji wan cihên asê û bilind xelas dibin.Ji ber ku cîh û warê pêşmergan ev çiyayên bilind û asê bûn,ciyê parêziyê ev çiya bûn.

Pêşmergeyên leheng gelek caran di van çiyayên bilind û asê de zora dijminê xwe birine û birînên bê derman di laşê dijmin de vekirine.Bilindbûn û asêbûna van çiyayên bi heybet tirseke mezin dixist dilê dijmin.Ew dilerizandin.Ji ber ku,di van çiyan de pêşmergeyên Kurd şêr û pilingên Kurdan cîh girti bûn.Ji van çiyan agirê sor bi ser dijmin de dihate barandin.Ev çiyayên bilind weke hêlîna mozên sor bûn.Dijmin nikarî bû tiliya xwe têxe vê hêlîna mozên sor.Ji ber ku,mozên sor bi meriv vedidin û vedana wan bê derman e.Ev mozên sor bê guman e ku,pêşmergeyên Kurd û Kurdistan in....



Pêşmergeyên ku,li çiyê bûn,carekê ji dûr ve nerîn û dîtin ku va qederê sed pêşmergeyî berê xwe dane aliyê wan û ber bi wan ve tên.
Rabûn tevda mizgînî dan hev.Tev derketin pêşiya wan.Piştî qederekê tev gihan hev,tev çûn dest û rûyên hev û xêrhatin li hev dan.

Tev çûn cîhekî xweş li hev kom bûn û rûniştin.Lê pêşmergeyên çiyê li tiştekî mabûn ecêbmayî.Ji aliyê din jî gelekî serbilind bûn.Ew ecêb mayîn dîtina keçên Kurdan di nav pêşmergeyan de bû.

-ê,gelî bira,hûn tev bi xêrê hatin qada şerê serbixwebûnê.

-Zor sipas,zor sipas gelî hevalan.Bila şerê serbixwebûnê ji bo me serketin be.

-Ma hûn wesitiyan e ? yê ku westiya be bila here xwe dirêj bike û rakeve.

-Na heval na,westîn ji me re şerm e.Ger em di meşa rojekê de biwestin,em ê çawa bi meh û salan şerê dijmin bikin ? Divê westîn ji bo me tune be.

-Pir rast e,pir rast e.Divê westîn ji me pêşmergan re tune be.

-Gelo ev xwîşkên me kî ne ?hatina wan ji bo me sirbilindiyeke pir mezin e.

Hadî got:
-Ev xwîşka min Xanê ye û hevala heval Welat e.Ev keçên din jî xwîşkên me ne û ji gund bi me re hatine da ku,alîkariya we bikin.

-Pir baş e,pir baş e.Birastî şoreş bê jin nabe.Divê jin jî weke mêran xwe bavêjin qada şer.Ma ne rast e xweha Xanê ?

Xanê:
-Rast e bira rast e.Şerê welat ji bo me jinan jî serxwegirtiyeke pir mezin e.

Divê keç û jinên Kurdan,keç û jinên Kurdistanê,pişta xwe bidin pişta pêşmergeyên leheng ew jî xwe bi wan re ji bo welatê xwe Kurdistan gorî bikin.Ger ne weha be şoreş naçe serî.

Hebûna jinan di şer an di şoreşekê de gelekî giring e.Hê "Leyla Qasim-Şello (Margrêt)" ji bîra me ne çûne birayên delal. Ma em ji -wan çêtir in ? na,ew ji me çêtir bûn ku,xwe ji bo welatê xwe bi mêranî gorî kirin.Ala ku, wan hilda bû divê îro li ser milên keç û jinên Kurdistanê bê hildan û li ser milên wan pêl bide.

-Bijî xwîşka delal bijî.Tu gelekî rast dibêjî.Ez hêvî û bawer dikim ku,di pêşerojê de wê keç û jinên gelên Kurdistanê tev weke we leheng û dilxwaz bibin.Hûn ê ji wan re bibin nîşan.

Divê keç û xortên Kurdan bîr û baweriya xwe bi temamî bi doza xwe bînin.divê baş zana bin û bizanibin bê ji bo çi şer dikin û armanca wan ya bingehîn çi ye.

Ev şer ji bo xelasiya me teva ye.Çi jin,çi mêr,çi kal û çi zarok,divê tev milên xwe bidin milên hev û bi yekîtiyek xurt û bê tixûb xwe bavêjin qada şerî.Di vî şerî de ya giringtir ev e ku,em dost û dijminên xwe baş binasin û li gor wê em gavên xwe bavêjin. Bav û kalên me ji ber ku,dost û dijminên xwe nas ne kirin,gelek caran hatin xapandin û şoreşa wan bi bin ket.Divê em ji dema çûyî fêran bistînin.Ya herî giring jî ev e ku,divê şoreşame di bin ala partiyeke pêşverû û şoreşger de bimeşe û bi ilmekî zanistî divê pêşiya xwe bibîne.Ger ne weha be,weke gelek caran em ê têkevin koncal û nava teqanê.

-Rast e bira rast e.Ger em ji dema çûyî fêran nestînin,em dê nikaribin pêşiya xwe ronî bikin û tê de pêngavên mezin bavêjin.

-De baş e hevalno! em îşev razên,sibê em ê hevalên çûnê bişînin mal û wê hevalên nû têkevin şûna wan.

-Baş e,baş e. De hevalno şeva we bimîne xweş.

-Ya we teva jî birano.

------------- -------------

Adinî rojê pêşmergeyên nû xwe kar kirin Hevalên wan kemînên ku,li hember dijmin bisekinin şanî wan dan.

Welat û Xanê jî di kemînekê de û bi hevre disekinîn.Hadî jî li ser pêşmergeyan digeriya û dilê wan xweş dikir.

Pêşmergan cîhên xwe,çek û topên xwe tev bi cîh kirin,tu kêmasiya wan ne ma bû. Pêşmergeyên berê,xwe kar kirin,xatir ji hevalên xwe xwestin û bi destûra mehekê çûn nav zar û zêçên xwe.Hevalên wan ji wan re goti bûn ku,divê di roja xwe de hûn li vir amade bin.Wan jî daxwaza hevalên xwe pejirandin.Wan bi kêfxweşî berê xwe dan malê.Ji zûv de neçûbûn mal.Lê îcar mehekê destûra wan hebû,wê têr kulên dilê xwe birijandana.

Di nava pêşmergan de gelek jin û keçên gundî jî hebûn.Wan ji pêşmergan re xwarin çêdikirin û cilên wan dişûştin.Gelek caran wan jî bi pêşmergan re li dijî dijmin şer dikirin û rê li dijmin teng dikirin.

Xanê jî alîkariya çêkirina xwarinê û cilşûştinê bi jinan re dikir.Lê Xanê wextê xwe yê pir di nav pêşmergan de derbas dikir û ji wan hînî gelek tiştan dibû.Xanê bi alîkariya hevalan,pir nîşangir û şerker bû bû.Keçên Kurdan yên din jî xwe hînî nîşanê û şer kirinê dikirin.Ev ji bo wan pêşveçûnek mezin bû.

Welat di kemîna xwe de û çavnêriya dijmin dike.Xanê car bi caran ji kemînê derdiket û diçû li rewşa hevalên xwe yên din dipirsî. Welat carna gelekî ditirsiya.Ew tirs ne tirsa dijmin lê tirsa Xanê bû.Wî digot qey wê tiştek bê serê Xanê.Xanê tirsa dilê hezkiriyê xwe dizanî bû,ji wê yekê ew bi tenê ne dihişt û dilê wî xweş dikir.

Çiyayên ku pêşmerge tê de,ji bo nêçîrê gelekî dest dayî bû,gelekî xweş bû.Tê de her texlît lawir(heywan-teba) hebûn.Pêşmergan gelek caran xwarina xwe ji nêçîrê derdixistin. Gelek caran Kew,sûsk,kîroşk an Xezal dikuştin û ji xwe re li ser agir dibirajtin.

Xanê jî ji vê nêçîrê bêpar ne dima.Dilê wê pir hebû ku,biçe nêçîrê.Kêfa wê gelek ji nêçîrê re dihat.

Hevalên Xanê yên pêşmerge,ne dixwestin dilê wê bihêlin.Ji wê yekê destûra wê didan ku,here nêçîr ê.Lê ne dihiştin ji tixûbên xwe derbas bibe.Ji ber ku,hê gelek çiya di destên dijmin de bûn.Ji wê yekê kes ji tixûb derbas ne dibû.

Xanê her cara ku,diçû nêçîrê,destevala ne dihat bi ser hevalên xwe de.Çi cara ku diçû, an çend kew,an çend kîroşk an jî lawireke din yê xwarinê bi xwe re tanî.

Lê çavê Xanê tenê ne di nêçîra lawiran de bû.Her weha çavên wê li nêçîra dijmin jî bû. Çaxa ew diçû ber tixûbên xwe û yê dijmin,wê çavên xwe li rêçekê hêsanî digerand da ku,pê bikaribe êrîşî dijmin bike.Xanê her dixwest ku tolê ji dijmin bistîne.Bi tenê nikarî bû tola gelekan bistîne,lê wê digot"ez ê bi destên xwe çend dijminan bikujim" da ku dilê wê rehet be.

Xanê her sûnd xwarî bû.Wê di dilê xwe de digot:"hetanî ku,ez çend dijminan ne kujim

ez venagerim malê.An ez ê bêm kuştin an jî divê ez tolê bistînim!"

Di serê Xanê de tenê ev raman hebû.

Rojê wan derbas dibûn.Heta wê çaxê(wê rojê) tu êrîş ne kiri bûn û tu jî ne dîti bûn.

Pêşmergeyên leheng rojekê li hev civiyan. Wan biryar girtin ku,şevekê êrîşekê bibin ser wargeha(kamp) dijmin.

Li aliyê din,leşgerên dijmin pir westiya ne.Ji tirsan xew nakeve çavên wan,tevde ser gêj û sist in.Serleşgerê dijmin di mezela xwe de kêfa xwe dike.Ew serê xwe bi leşgerên xwe naêşîne,tenê fermanê dide wan.Leşger hingî bê xew û bê hal in,ji serleşgerê xwe pir aciz bûne,ew dixwazin roj berî rojê ji vî halî xelas bibin.

Pêşmergeyên Kurd xwe ji bo êrîşê kar kirin. Tevde weke şêran bê tirs bûn.Çavên wan weke piringên agir dibiriqandin,dilê wan qewîn û govend lê dixist.
Wan cihê ku,serleşgerê dijmin lê dima dizanî bûn.Diviya bû vê carê derbeke pir mezin li dijmin xin.Tevde kar kirî û li benda şeva tarî bûn.
Xanê û Welat jî xwe pir baş şidandi bûn. Welat pir ji Xanê ditirsiya ku,tiştek bê serê wê.Lê Xanê tirs ne diket dilê wê.Wê her tişt dabû ber çavên xwe,diviya bû çend leşgerên dijmin bikuje da ku,tolê bistîne û dilê xwe hênik bike.

Leşgerên dijmin weke her car bê hal û westiya ne.Haya wan ji tu tiştî tune ye.Tev sist û sergêj di kemînên xwe de ne.
Serleşgerê dijmin wê şevê pir vexwariye. Jinek jî ji bajêr aniye û kêfa xwe dike.Wî di ber jinikê de her tişt ji bîr kiriye,haya wî ji tu tiştî tune ye.

Hêdî hêdî roj diçe ava û dinya dikeve nava tariya şevê.Her ku dinya tarî dibe,dilê leşgerên dijmin tije tirs dibe.Lê ji bo pêşmergeyên Kurdan weke hev e.Çi roj be û çi jî şev be,tu ferqî nakeve navê.

Pêşmergeyên Kurdan,ji leşgerên dijmin bêtir şidiyayî û bêtir bi hêz bûn.Bindestbûna welatê wan Kurdistan,talankirina dewlemendiyên welatê wan yên ser erdîn û bin erdîn,nîjadperestiya ku li ser gelê wan dihate kirin qirkirinên ku,bi sed salan li ser gelê Kurd hati bûn û dihatin kirin,evqas bûyêr dihatin ber çavên wan û dilê wan li dijî dijmin tijî kîn dibû û rikdar dibûn.Evqas bûyêrên ku hati bûn serê gelê Kurd yê bê tawan,evqas zînat û zora ne mirovtî,bêtir ew davêtin qada şer bêtir ew hartir û qewîntir dikirin.

Dilê teva govend lê dixist.Digotin kengî em êrîş bikin ser dijmin û tola xwe ji wan hilînin.Lê hêdî hêdî roj diçû ava û daxwaza wan dihate cîh û rê ji wan re vedikir.



Roj çûbû ava,tariya şevê xwe berda bû ser çiyayên Kurdistanê.Pêşmergeyên Kurd li hev civiyan.Diviya bû her kes serxwegirtiya xwe bi cîh bîne.

Pêşmergeyên leheng cihê dijmin bi hev dan naś kirin û pêşmerge bûn çar şiq.Her şiqek çû aliyekî dijmin.Pêşmergeyan di nava xwe de şêwrek danî bûn.Li gor wê şêwrê,diviya bû pêşmergeyên şiqê yekemîn dest bi gulebarandinê bikin.Piştî ku,şiqê yekemîn dest bi şer kir,wê dijmin hêza xwe bide aliyê şiqê yekemîn.Dûvre wê şiqê dudo,sisê û çaran ji paş ve êrîş bikin ser dijmin.

Li ser vê şêwrê,her çar şiq belav bûn û her şiqekî çû kemîna xwe.

Xanê û Welat jî di şiqê caremîn de bûn.Xanê demançe di ber de,rext li piştê û xencerek jî xisti bû ber gora xwe ya lingê rast ê.Xanê pir fireh difikirî.Wê digot"hema çi dibe çi nabe,dibe ku,ev xencer jî pêwist be!"

------ ------ ------

Dinya şev e û tarî ye.Pêşmergên her çar şiqî hêdî hêdî xwe nêzîkî dijmin dikin.Hawîrdorê dijmin bi pêşmergeyên Kurdan ve hate girtin.Tevde li dora dijmin bûne xelek.Çûk bi çûkaniya xwe nikare xwe ji nav wan xelas bike.Hevqasî ku pêşmergan tevdîreke baş û têkûz danîne.

Di navbêra pêşmergan û dijmin de tiştekî hindik mabû ku,bigihên hev.Şiqê pêşmergan yê yekemîn xwe gelekî nêzîkî dijmin kiri bû. Li ber tixûbên dijmin ji xwe re cihên asê yê paraztinê girtin û karê xwe û şer kirin.

Li aliyê din şiqê dudo,sisê û çaremîn jî xwe baş nêzîkî dijmin kirin.Ew man li benda destpêkirina şerê şiqê yekemîn.

Tev li benda destpêkirina şerê şiqê yekemîn in.

Piştî qederekê,dengên çek û tifingan tariya şevê çirand û şiqê yekemîn dest bi şer kir. Di tariya şevê de bû şer û ceng.

Dijmin nema dizanî bûn bê çi qewimî.Leşgerên dijmin sergêj,sist û çav li xew radihiştin çekên xwe û ber bi dengê çekan ve dibeziyan.Dijmin leşgerê xwe tev dan ser şiqê yekemîn.Piştî qederekê şiqên din jî dest bi şer kirin,dora dijmin girtin û dest bi kuştina wan kirin.

Leşgerên dijmin di nava çar agiran de mabûn.Bi ku de diçûn gule û berik li wan dibariyan.

Di nava tariya şevê de leşgerên dijmin yên ji tirsan,yên ji tiştên din gelekan ji wan xwe winda kirin.Risq û siûda wî hebû yê ku canê xwe xelas bikira.

Pêşmerge tev keti bûn nava hev û bi hev re şerê dijmin dikirin.

Xanê bi dizî xwe ji şiqê xwe veqetand û berê xwe da qonaxa serleşgerê dijmin.Welat carekê li tenişta xwe nerî lê Xanê ne dît.Wî jî xwe ji hevalên xwe veqetand û li Xanê geriya.

Pêşmergan derbeke mezin li dijmin xisti bûn. Gelek ji dijmin hatin kuştin û gelek jî birîndar bûn.Tenê leşgerên qonaxa serleşger ma bûn. Serleşger di mezela xwe de diçe û tê.Çend leşger jî li ber devê derî ne.Haya serleşger jê tune ye ku,leşgerên wî tev hatine kuştin.

Xanê xwe nêzîkî qonaxa serleşger kir.Daxwaza wê ku,serleşgerê dijmin bikuje.Xanê xwe bi dizî gihand ber pencerê(rojînê).Di pencerê re li hundir mêze kir,dît ku,va serleşger di hundirê mezelê de diçe û tê.

Xanê di pencerê re berê tifingê xist sînga serleşger û lingê wê kişand

teq teq teq
teq teq teq

Serleşger bê ruh kete erdê.Leşgerên li ber devê derî çaxa derî vekirin û ketin hundir, hema Xanê ew jî li erdê vezilandin.

Piştî Xanê ew kuştin,rabû çû hundirê qonaxê.Tifinga wê di destan de û li ser cendekên dijmin sekinî.Ji ber ku,leşger li wir nema bûn,Xanê bê tirs li hundirê qonaxê rûnişt.

Pêşmergan leşgerên dijmin tev ji hev belav kirin.Gelek ji wan hatin kuştin,gelek hatin birîndar kirin û gelekan jî ji qada şer reviya bûn.

Dengê çek û tifingan sekinî bû.Pêşmerge keti bûn her cîhî.Çiyayên ku,berê dijmin tê de tev xisti bûn destên xwe.

Welat geriya,ne geriya lê Xanê ne dît.Ew li nav hevalên xwe teva geriya lê pêjina Xanê ne kir.Dil bi tirs bû.Wî digot qey tiştek bi Xanê hatî ye.Lê wî nizanî bû ku,Xana leheng serleşgerê dijmin kuştiye û li ser cendekê wî rûniştî ye.

Welat bi dilekî tirs û madekî ne xweş li nava pêşmergan li Xanê digeriya.Birayê Xanê Hadî,çaxa çav li Welat kir ku,mad tirş e,fêm kir ku,tiştek qewimî ye.Hadî hat cem Welat û jê re got:

-Çima madê te ne xweş e Welat ? tu çavên xwe li tiştekî digerînî ?

Welat çav bi hêstir got:

-Ez li Xanê digerim,lê min ew ne dît,nebe tiştek pê hati be ?

-Xanê ne zarok e,tiştek pê nayê,ma te li qonaxa serleşger nerî ?

-Na,min li wir ne nerî,ma gelo li wir e ?

-Dibe ku,li wir be.Xanê pir tiştan difikire dibe ku,tiştên mezin kiri bin.

Pêşmergan piştî ku çiya ji leşgerên dijmin safî kirin,xwe berdan û berê xwe dan qonaxa serleşgerê dijmin.Wan digot qey hê serleşgerê dijmin sax e.

Pêşmerge bi dizî ketin dora qonaxa serleşger.Wan digot qey di qonaxê de gelek serleşger û leşger hene.Lê dûvre nerîn ku,tu deng ji qonaxê nayê,îcar bê tirs ketin qonaxê.

Lê çaxa ketin hundirê qonaxê man ecêb mayî. Dîtin ku,va Xanê tifing di destan de û rûniştî ye.Serleşger û çend leşger jî bê ruh li-erdê vezilandî ne.Wan fêm kirin ku,Xanê ew kuştine.

Bi vê dîtinê pêşmerge tev dilxweş bûn.Xanê tiştekî pir mezin kiri bû.Xanê serxwegirtiya-xwe bi cîh anî bû û dilgeş bû.

Xanê êdî roj bi roj di nava hevalên xwe de bêtir bi rûmet û bi qedir bû.Pêşmergan pir rêzdariya Xanê digirtin.

Welat dawiya pêşmergan teva hat qonaxê.Çaxa çav li Xana xwe kir,bêhna wî fireh bû.Hema bi xar çû aniya Xana xwe maç kir

-Bijî Xana Kurdan bijî.
-Bijî lehenga Kurdan bijî.

Pêşmergan teva li qonaxê xweha xwe Xana leheng pîroz kirin.Tevda biryar dan ku,Xanê xelat bikin.Divê ji Xanê re xelateke hêja bihata standin.

Wê şevê pêşmergan li hevalên xwe pirsîn û li hev kom bûn.Hevalên wan tev sax bûn.Lê tenê çend pêşmerge hati bûn birîndar kirin. Wê şevê birînên wan derman kirin û pêçan.Lê xew ne ket çavên wan,ji kêfa re ma xewa kê dihat! Heta serê sibê li ser serketina xwe axivîn û serketina xwe pîroz kirin.

Vê carê derbeke pir mezin li dijmin xistibûn.Birînên dijmin bê derman bûn.

Adinî rojê pêşmerge tev rûken û dilgeş têr li ser çiyayên ku,ji dijmin standi bûn,geriyan û bêhna xwe derxistin.

Erd û çiyayên xwe ji bin destên dijmin rizgar kiri bûn.Ala rengîn li ser çiyayekî bilind ber bi ba diket û pêl dida.Weke rojê ku,tîrêjên xwe berde ser dinê û dinê xweş bike.Lê pêldana ala rengîn hê jî xweştir bû.Ji ber ku,ew bi xwîna pêşmergeyên leheng,bi xwîna keç û xortên Kurdistanê hati bû standin.Ji wê yekê ala rengîn rûbiken û serefirazî pêl dida.Pêşmergeyên mêrxas li hember ala rengîn bextewar û ji kêfa re hêstirên wan ji ber xwe ve dihatin xwarê.Heta bi hêstirên wan jî,jibo ala rengî diketin rêzê û bi germîtî xwe berdidan xwarê.

Wê rojê pêşmergan biryar dan ku,serketina xwe bi govendekê mezin pîroz bikin.Rabûn çend hevalên xwe şandin bajêr ji bo ku,gewendan (daholvan û zirnevan) bînin û ji bo Xanê jî xelatekê bistînin.

Bi çûyîna pêşmergan,serketina wan li her cîhî belav bû û hat bihîstin.Li gelek bajar û gundan govend ji bo serketina wan li dar xisti bûn.Tevda serketina pêşmergeyên leheng pîroz dikirin

Lê nav û dengê Xana leheng ji deva dernediket,ji gundan derbasî bajaran û ji devan dikęt devan.Her kes li Xanê diman ecêb mayî û digotin çawa serleşgerê dijmin kuştiye.

Bi belavbûna nav û dengê Xana Kurd,keç û jinên Kurd yên din jî,ji wê fêre digirtin û dixwestin ew jî bibin weke Xana mêrxas û jibo serbixwebûna welatê xwe şer bikin.

Ji her derî,ji her gund û bajarî ji pêşmergan re pîrozname dihatin.Her kesê Kurd bi serketina pêşmergeyên xwe serbilind bûn û baweriya wan bêtir li rizgarbûna welatê wan dihat.

Ji aliyê din dijmin bi vê serketina Kurdan stuxwar û birîndar bû.Tu cara derbeke weha mezin ne xwari bûn.êdî birîn bê derman bû.



Adinî rojê pêşmerge ji bajêr vegeriyan.Bi xwe re daholvan û zirnevan jî anî bûn.Ji Xanê û keçên din jî re xelat standi bûn.Ji bo her keçeke Kurd zêreke girover û bi zincîr standi bûn.

Wê rojê pêşmergan teva li ser çiyayên rizgarkirî govenda azadî û serbixwebûnê li dar xistin.Gelek Kurd ji gundan hati bûn û ew jî keti bûn govendê.

Di govendê de xelatên keçên Kurdan jî bi wan vekirin.Teva hev pîroz kirin.Keçên Kurdan gelekî kêfxweş bûn.Keçan jî destên xortên Kurdan girtin û ketin govenda serketinê.

Di govendê de dengên çek û tifingan xweşiyeke din dida govendê.Çaxa govend li dar keti bû,ala rengîn jî govenda serketinê li hewa pîroz dikir û pêl dida.

# V E G E R

Roj derbas dibûn,rojên çûyîna pêşmergan nêzîk dibûn.Pêşmergan serxwegirtiya xwe ya mezin bi cîh anî bûn,êdî tu asteng di pêşiya xebata wan de nema bûn.Dikarî bûn bê tirs û bi serbestî li ser çiyayên xwe bigerin û her daxwaza xwe bi cîh bînin.

Pêşmergeyên ku,çûbûn malê karê xwe û vegerê dikirin.Heftak wextê wan ma bû.

Xanê û Welat her roj bi hev re diçûn nêçîrê.Çiyayên wan hati bûn rizgar kirin,êdî bi serbestî dikarî bûn nêçîrê bikin.

Xanê û keçên din,di mehekê de bû bûn tekoşer,ji birayên xwe yê pêşmerge pir tiştan hînbû bûn.Dixwestin her dem li serê wan çiyayên xweş bin û bibin parêzgerên welatê xwe.Lê rojên wan nêzîk dibûn.Diviya bû herin gundê xwe û serxwegirtiya xwe ya welatî bidin ser milên heval,hevrê û hevbîrên xwe.

Birayê Xanê Hadî jî,wextê dibistana wî hati bû.Ew ê jî bûba mamosteyê gundê xwe û wê zarokên gundiyan yên Kurd hînî xwendin û nivîsandinê bikirana.

Li gund kar û barê hatina pêşmergan dikirin.Gundî tev li benda hatina wan bûn.Yên ku li benda hatina mêrê xwe,yên ku li benda hatina keç û xortên xwe û yên ku,li benda hatina birayên xwe,çavên teva li riya wan bû.Gundiyan daholvan û zirnevan hazir kiri bûn da ku govenda pêşmergeyên xwe li dar xin.

Keç û jinên gund tev li benda hatina xweha xwe Xana leheng bûn.Ji zûv de ew ne dîti bûn û gotinên wê yên xweşne bihîsti bûn. Ew li benda hatina Xanê bûn da ku,bê û serpêhatiyên xwe ji wan re bêje.

Keçên gund yên xort û gihiştî,çavên wan li riya hatina hezkiriyên xwe bûn.Bi hatina wan,wê cardin evîniyek germ û xurt ew hembêz kiribana û wê bi evîna hev bişewitiyana.

Roja wan ya dawî jî hat û lê xist.Pêşmergeyên çûnê xwe kar kirin.Pêşmerge tev li hev kom bûn,tev ketin rêzê û li ser lingan sekinî man.Hevalekî wan çû ber ala rengîn,hêdî hêdî şerîta wê kişand û ala rengîn hêdî hêdî li hewa dest bi pêldanê kir

Pêşmergan teva bi hev re dest bi xwendina xweşxwana Kurdî ya gelêrî kirin:

"Ey raqîb her maye kewmê Kurd ziman
Naşike û danayê topên zeman
Kes nebê Kurd dimirin
Kes nebê Kurd dimirin
Kurd jî jîn divin
Jîn dibê qet nakeve ala Kurdan

Em xortên Medya û keyhusrew in
Seyr bike xwîna diyan me da rijand

Kes nebê Kurd dimirin
Kes nebê Kurd dimirin
Kurd jî jîn divin
Jîn dibê qet nakeve ala Kurdan

Em xortên rengê sor û şoreş in
De bi xwîn neqşîn bikin taca cîhan

Kes nebê Kurd dimirin
Kes nebê Kurd dimirin
Kurd jî jîn divin
Jîn dibê qet nakeve ala Kurdan

Lawê Kurd tev şiyarbûne wek şêran
Dîn îman û ayînîman Kurd û Kurdistan

Kes nebê Kurd dimirin
Kes nebê Kurd dimirin
Kurd jî jîn divin
Jîn dibê qet nakeve ala Kurdan

Lawê Kurd tev hazir û amadene
Can feda ne can feda her can feda

Kes nebê Kurd dimirin
Kes nebê Kurd dimirin
Kurd jî jîn divin
Jîn dibê qet nakeve ala Kurdan"

Piştî xweşxwan qedandin,dilê teva bi xurtî hildavêt.Tevde ser bilind û bextewar bûn.
Xanê cara pêşîn bû ku,xweşxwana gelêrî dixwend.Ji wê yekê dilxweşbûna Xanê,lehengbûn û serbilindiya wê li wir dihate dîtin.
Hevalên Xanê tê derdixistin ku,Xanê ji dilxweşbûnê çavên wê tijî hêstir bûne.Ew jî weke xwîşka xwe Xanê serbilind û bextewar bûn.

Piştî xweşxwan qediya,pêşmergeyek ji wan yê zana,derket ser latekê û gazî hevalên xwe kir û got:

-Hevalên hêja,pêşmergeyên giranbiha!
Em bi hatina we gelekî serbilind û gelekî dilxweş in.Hatina we piştа me qewîntir û baweriya me zêdetir kir.Em êdî bawer dikin ku hevalên me yên rizgarîxwaz,hevalên me yên ku bikaribin welatê me biparêzin û xwe ji bo welatê xwe gorî bikin henin.Ev hebûna hevalên weke we tekoşer û rizgarîxwaz,tekoşîna me xurt tir dike û rojên serbixwebûna welatê me û azadiya gelên me nêzîktir dike.
Bi hatina we,bi alîkariya we,me derbeke mezin li dijmin xist û birîneke bê derman di laşê dijmin de vekir.Ev ji bo me serketin û ji bo dijmin mirin e.
Em sûnda mirinê dixwin ku,ji ser çiyayên xwe neyên xwar,ta ku,welatê me serbixwe û gelê me azad bibe.Doza me wê her hebe û hetaku,mêrekî Kurd li ser rûyê erdê hebe,wê tekoşîn û şerê me berdewam be.
Divê em vê jî bizanibin ku,êdî me dijminên xwe nas kirine.Dijminên me Emperyalîzma cîhanê,qolonyalîzim,faşîzim û feodalîzme.
Herweha ev dijminên gelên bindest yên cîhanê teva ye.Li hember Emperyalîzma cîhanê û li hember vîlik û planên wê divê her mirovê demoqrat û welatparêz xwe bavêje qada şer û li dijî vê rista dijmin şer bikin.Ger ne weha be serketina me dijwar e.

Divê em vê jî bizanibin ku,hemû miletên bindest û karkerên dinê birayên hev û hevalên hev in.Di şerê me yê li dijî Emperyalîzmê de rista sosyalîst,tevgerên netewî yên gelên cîhanê yên rizgarîxwaz û karkerê dinê heval û piştgirtiyên me ne.Divê em xwe ji wan bi dûrnexin,divê bi her awayî em bi hev ve girêdayî bin.

Pêşmergeyên me yên leheng dê tucarî ranewestin,tucarî serê xwe ji dijmin re natewînin wê her dem ji bo paraztina welatê xwe û domkirina jîyana gelê xwe şer bikin.

Hevalno !

-Hûn çawa bi xêr hati bin,hêviya me ew e ku, hûn cardin bi xêr û bi dilekî xweş vegerin nava malbat û zarokên xwe.Hatina we û alîkariya we,wê ji gelên Kurdistanê re bibe nîşan. Ev serxwegirtî ya hemû Kurdan e.Bê yekîtî em nagihên armanca xwe û serfiraz nabin.Divê her kesekî Kurd ji bo yekîtiya Kurdan û Kurdistanê xwe bêşîne û xwe nede paş.Hêza me ji yekîtiyê der tê.

Em li vir sipasiyên xwe berpêşî we dikin. Nemaze xwîşka me Xanê û yên din,em serbilind û bextewar kirin.Ev mêraniya we nayê ji bîr kirin û hûn ê tim di dilê gelên Kurdistanê de bin.Weke"Şêx Seîd,Seyid Riza,İhsan Nûrî paşa, Şêx Mehmûdê Berzencî, Qazî Mihemed,Barzanî, Leyla Qasim,Şello(Margrêt) û.h.d." weke wan mêraniya we jî wê her di dilê me de be.Em vê xebata we ji bîr nakin.

Di dawiyê de em va gotinan dibêjin
"Bila bijîn pêşmergeyên qehreman"
"Bila bijî tekoşîna gelên bindest ya ji bo serbixwebûn,demoqrasî û sosyalîzmê"
"Bila her bijî Kurd û Kurdistan"
Zor sipas

Teva li çepikan xistin.Hevalê wan xweş axivî bû.Dilê teva bi gotinên hevalê wan xweş bû.

Piştî axavtina hevalê wan xelas bû,biraye Xanê Hadî jî derket ser latê û wî jî çend gotin gotin.Piştî Hadî gotinên xwe gotin,pêşmergan ji wî re jî li çepikan xistin.

Piştî van gotin û axavtinan,hevalekî ji yê wan hat û mizgînî da wan

-Gelî hevalan,hevalên me yên çûyî va hatin

-Her bijîn,her bijîn

-Her bijîn,her bijîn.

Piştî qederekê nerîn ku,va hevalên wan tev bi hev re hatin.

Tev çûn pêşiya wan,çûn dest û rûyên hev û hevdû bi hevrêtî û biratî hembêz kirin.

Hevalên wan yê nû hatî,serketina wan pîroz kirin û bi serketina hevalên xwe serbilind bûn. Teva qederê du sê seetan li ser serketina xwe li ser rewşa dinê û li ser pirs û pirsiyarên hev axivîn.Tevde bi rûken û bextewar bûn.Ev rûkenî û bextewarî ya serketina wan bû..

Çiyayên Kurdistana şêrîn ji pêşmergan hatibûn xemilandin.Her yekî weke şêran bi heybet bi hêz û li ser xwe bûn.Çavên wan weke piringên êgir di nava serê wan de dibiriqand.Meriv li ser lat û zinaran dinihêrt,meriv didît ku her lat û zinarek,her dar û deviyek,pêşmergeyekî dest bi çek li ber e û zinar û lat,dar û devî bi van pêşmergan serbilind in.

Çiya tev bi pêşmergan dilxweş bûn.Dar û deviyan ji kêfa wan re şax û guliyên xwe bê tirs berdidan,geya bê tirs mezin dibû,çûk û çivîkan,kew û kevokan,teyr û başokan,bi dilxweşî li ser çiyan dixwendin û wan jî serketina pêşmergan bi zimanê xwe pîroz dikirin.

Çiya rizgar û lawir û tebayên li ser jî azad bû bûn.Ji çiya û newalan,ji dar û deviyan,ji çûk û çivîkan,ji keroşk û xezalan,ji her lawirî û bi her zimanî ji pêşmergan re -

pîrozname dihatin.Lawiran teva bi zimanê xwe serketına wan pîroz dikirin û dixwendin.

Çiya û newal,zozan û berî,lat û zinar êdî ji bin destên dijminên qolonyalîst rizgar bûbûn.Serê sibehan rojê tirêjên xwe bi kêf berdidan ser çiyan û ew bi tirêjên xwe pîroz dikirin,çûk û çivîkan,kew û kevokan êdî bê tirs li ser lat,zinar û dar û deviyan dixwendin.Bê tirs hêlînên xwe çê dikirin û meriv heweskar dima ku,li bin siya darekê an latekê rûnê û li xweşiya dengê wan gundarî bike.

Xezalên çavbelek,xwe ji latan davêtin ser latên din,ji kêfa re kevir ji ber lingên wan dipengizîn,ji xwe re lotik davêtin.

Şivan û gavanan her sibe bi kêfxweşî radibûn ser xwe û bi xwestek pez û dewarên xwe didan ber xwe û bi rûkenî berê xwe didan çiyayên rizgarkirî.Şivanan li ber pez,derd û kulên xwe bi bilûrên xwe tanîn ziman,bizin û mîh ji kêfa dibariyan û guhdariya dengê bilûra şivanê xwe dikirin.

Bêrîvaniyan serê sibehan bi koman didan dûhev,bi rê de distiran,geh bi tenê,geh bi hevre digotin û geh jî davêtin ber hev,Bi rûkenî û dilgeşî diçûn bêriyê û vedigeriyan.

Dengên çûk û çivîkan,dengên kew û sûskan weke tembûrên hozanan,weke bilûrên şivanan,weke zîzbûn û xweşbûna dengên Keçên Kurdan bi meriv xweş dihat.Meriv dixwest ji sibê heta - êvarê ji xwe re li dengê van lawiran gundarî bike,hevqasî kû, xweş û bi aheng bû.

Bilind bûn û pir bûna darê berû û deviyên bi kat û şax,bêhna meriv derdixist.Meriv heweskar dima ku,here ser zinarekî bilind û jixwe re têr li xweşbûna çiyan,lat,zinar,dar û berên Kurdistanê binihêre.Nexasim ku,çaxa meriv diçû ser çiyayekî bilind û li gundên Kurdistanê dinihêrt,weke koma çûk û çivîkan ji meriv re xuyanî dikir.Erda Kurdistana rengîn bi gundan hati bû xemilandin.Bi wê hewa paqijû bijûndar ve tenê ev dihat bîra meriv"Bihuşta me Kurdan.tenê Kurdistan e"

Pêşmerge tev têr ji xwe re axivî bûn.Derd û kulên xwe,xwestek û daxwaziyên xwe ji hevre goti bûn.Tevde kar kirî bûn.Piştî têr axavtinê, rabûn teva xatir ji hev xwestin.

-Bi xatirê we hevalno!

-Bi xatirê we gelî lehengên Kurdan!

-Hevalno! qet xema nexwin em her dem li pişta we ne.Kîjan rojê ku hûn bixwazin,em ji bo serbixwebûna welatê xwe amade ne.Daxwaza me ev e ku,hûn pêşmergeyên me yên leheng her dem bijîn û her dem bi ser kevin.Em bi hebûn û bi doz û daxwaza we gelekî serbilindin.
Bila bijîn pêşmergeyên qehreman
Bila her bijî Kurd û Kurdistan
Bila her bijî tekoşîna me ya ji bo serbixwebûn û azadî yê.

-Bijî,bijî

-De oxir be hevalên delal,riya we vekirî be. Dilê we xweş be,ji bo me xema nexwin,hetanî yek ji me hebe em ê welatê xwe biparêzin û em ê her bidin ser riya bav û kalên xwe.

-Yan Kurdistan yan neman,yan ji mirina me,yan ji hebûna Kurd û Kurdistan.

-Kekê Welat,li xweha me Xanê mixate be ha,tiştek pê neyê..!

-Her bijî tekoşîna jin û keçên Kurdan yan bi xort û mêrên Kurd yên rizgarîxwaz re.

-De bi xatirê we teva hevalno

-Oxir be,oxir be,bi xêr herin

-oxir be ji we re oxir be

-Silavan li gundiyan bikin ha

-Ser çavan,ser çavan

Hadî,Welat,Xanê û hevalên xwe,hêdî hêdî ji hevalên xwe yên pêşmerge veqetiyan û ji hev bi dûr ketin.Heta ji ber çavên hev winda bûn jî,teva destên xwe ji hev re dihejandin

Tam mehekê li cem hev û bi hev re man û bi hev re şerê dijmin kirin.Hilfa wan çûbû ser hev.Ji wê yekê çaxa ji hev veqetiyan çavên teva bi hêstir bûn.Bêhemdî wan hêstirên wan biser hinarkê rûyê wan de dihatin xwarê.

Hadî û hevalên xwe pêşmergeyên xwe yên leheng li ser çiyayên Kurdistana rengîn pârêz, ger hiştin û berê xwe dan gundê xwe.Dilê teva hê li ser hevalên wan bûn.Heta ku çûn gund jî hêstirên wan bêhemdî wan dihatin xwarê.

Pêşmerge man li ser çiyayên welatê xwe.Weke berê wê welatê xwe ji dijmin biparaztina. Teva bi yek dev û yek sûndê sûnd xwari bûn ku, ji ser çiyayên welatê xwe neyên xwarê ta ku, welatê wan serbixwe û gelên wan azad bibin.



Gundî tev çav li rê ne.Li benda hatina şerkerên xwe bûn.Gundiyan çend zarok şandi bûn serê çiyayên dorhêlê ji bo ku,çavnêriyê bikin.

Hadî,Xanê,Welat û hevalên xwe şev û rojekê bi rê de meşiyan.Nêzîkahî li gund kiri bûn. Çaxa gihan nêzîkî gund,biryar dan ku,hinekî bêhna xwe berdin.Rabûn li nêzîkî gund qederê nîvseetê rûniştin û bêhna xwe berdan.Dûvre rabûn û cardin dan ser riya xwe.

Zarokân li serê çiyan çavmêrî dikirin.Yekî ji wan ji dûr ve dît ku,va xort û mêrên wan tên.

-Kuro va hatin,zû herin mizgîniyê bidin gundiyan..

Zarok çûn û mizgînî dan gundiyan.Gundiyan rabûn daholvan û zirnevan dan pêşiya xwe û çûn pêşiya şerkerên xwe.

Hadî û hevalên xwe çaxa dengê dahol û zirnê sehkirin,fêm kirin ku,gundî hatin pêşiya wan,kêfa wan jî pir dihat.
Jin,zarok,keç û xort,pîr û kal teva dabûn dû hev,dabûn ser rê û ber bi wan ve dibeziyan.Cardin bû teqe teqa çek û tifingan.Meriv digot qey şerekî nû dest pê kiriye.

Çaxa gihan nêzîkî hev,tevde beziyan û xwe çeng kirin hev.Mezin diçûn çavên piçûkan,piçûk diçûn destên mezinan.Bav û dê diçûn rûyê lawên xwe,jin û mêr hev hembêz dikirin,keç û xort bi hezkirinekê germ li hev mêze dikirin dilê evîndaran bi xurtî hildavêt.

Tev bi hev re,bi def û zirne,hêdî hêdî ber bi gund ve meşiyan.
Piştî qederekê gihan gund.Gundiyan rabûn panzdeh bîst sewal ser jê kirin û dest bi çêkirina xwarinê kirin.Gundî û pêşmergeyên hatî li hev kom bûn.

Pêşmergan serpêhatiyên xwe ji gundiyan re digotin. Gundiyan jî ew pîroz dikirin. Bi wan gelekî serbilind bûn.

Xana çeleng jî keti bû nava keç û jinan û wê jî serpêhatiya xwe ji wan re digot.

Rabûn li gund sê roj û sê şevan govendek li dar xistin, wek dem û dewranên berê ji her gundî, ji her cîhî xelq hatin govendê. Nemaze ji bo dîtina Xana leheng dihatin.

Xanê bi xwe re aleke rengîn jî anî bû. Di govendê de Xanê û Welat di destên hev de, Xanê ala rengîn ber bi hewa vedikir û dihejand.

Nav û dengê Xanê li her derê belav bû. Gelek xort û keçên Kurdan ji Xana leheng fêre girtin û wan jî xwe ji bo welatê xwe avêtin qada şer û tekoşîn ê.

Xanê û evîndarê xwe Welat, gihan meqsed û miradê xwe û jiyana xwe li gund domandin.

Piştî derbasbûna wext û zeman, zarokên wan hatin dinê. Zarokên wan jî mezin bûn, wan jî ji dayika xwe ya leheng fêre girtin û wan jî bi mêranî dan ser rê û şopa bav û kalên xwe û li ser çiyayên Kurdistana rengîn wek dê û bavê xwe bûn pêşmergeyên qehreman yên Kurd û Kurdistan.

Xanê weke gelekan ji keçên Kurdistanê, weke "Leyla Qasim, Şello(Margrêt) û.h.w.d. da diyar kirin û gotinên bav û kalan anîn cîh ku, "**ŞÊR ŞÊR E ÇI JIN E ÇI MÊR E**"

**Bila her bijî Kurd û Kurdistan**

---

**DAWÎ**

**BIRÎNDAR**
Nexweşxana Elmanya
**1982**

# ŞÊR ŞÊR E

Şêr şêr e çi jin e çi mêr e
Axa welatê min her zîv û zêr e
Çavê min digrîn dil her dinale
Ji ber ku îro mayê ji xelkê re

Divê dest bidin hev çi jin û çi mêr
Karker û gundî û tev şoreşgêr
Divê em tev xwe bavên qada şer
Ji bo welat nemîne ji xelkê re

Li ser rêçek rast divê em rabin
Dilê şehîdan ji bo ku şa kin
Bila em bibin yek dest û yek dil
Em dest bidin hev tev jin û mêr e

Divê berê em tevde bixwînin
Ji bo wek rêber em rê bibînin
Wek berê nezan li paş nemînin
Ji dema çûyî bistînin fêr e

Ji bo welat divê em bibin gorî
Rizgariya me bi darê zor î
Roja me jî heye dinya bi dor î
Heçî berxê nêr e her ji bo kêr e

Va Birîndar im dil her dinalî
Keç û xortên Kurdan bikin guhdarî
Bixwînin,bişkînin rabin bi zanî
Heçî gelê Kurd e bi xwe her mêr e

25.2.1982




Jiyana min bê te nabe
Ey welatê Kurdistan
Rehên laşê min rawestîn
Tuyî xwin û ruh û can

Tu dara jiyana me yî
Em in şax û gulên te
Ger tu herdem hêşîn nebî
Jiyan tune bê guman

Ji bo te va ey gula sor
Bûn xemgîn û dîl û jar
Tuyî êşbir tuyî bijîşk
Tuyî ji bo me derman

Birîndar

BIHA -5 DM